Kampanya aboneyan berdewam e



3 Mehan

Rûdawê bêpere bixwîne

Agahiyên zêdetir di rûpela 12'an de

5

بەپێی بەڵگەنامەیەکی تازە بڵاوکراوە

# تورکیا دەیەویست عەبدولرەحمان مستەفا بکوژێ



Rûdaw

ÇAPA EWRÛPA

Rojnameya Kurdên Diyaspora

Deutschland 1,50 Euro | Danmark 15,00 DKK | France 1,50 Euro | Nederland 1,80 Euro | Schweiz 2,70 CHF | Sverige 21,00 SEK

Hejmar / Nr. 91 | 14 Nîsan / April 2011







## Ji guftûgoyên navbera partiyên Kurdan tenê

# nîvBLOK derket

■ Hilbijartinên Parlamentoya Tirkiyê li pêş derî ne û partiyên Kurdan dawî li hevdîtinên xwe anîn: Hêvî blokek Kurdî ji hemû partiyên Kurdan bû, lê tenê BDP'ê û KADEP'ê li hev kirin. HAK-PAR li derve ma.

2/3/4 »

Hevpeyvîna ligel Hevseroka BDP'ê Gultan Kişanak di rûpelên 10/11 de.

# Esad "nizanîbû ku Newroz çiqasî xweş e"



Wêne: Qamişlo (8.04.2011)

Bi berfirehbûna xwepêşandan li Sûriyê û Rojavayê Kurdistanê, Hikûmeta Sûriyê jî ketina nav hewlan ku Kurdan bikşîne aliyê xwe. Mafên ku Kurd bi dehsalan ji bo wan têdikoşiyan, bi yek gotinek Serokkomarê Sûriyê Beşar Esad "diyarî" Kurdan tên kirin, mîna dana nasnameyan ji bo "Kurdên bênasname". Lê tevî van "dilgermiyên" Dewleta Sûriyê, Kurdên Rojavayê Kurdistanê naxwazin baweriya xwe bi sozên Beşar Esad bînin û daxwaza bicîhkirina mafên xwe yên netewî di Makeqanûna Sûriyê de dikin.

Li aliyê din hewla Esad ya berbi xwe kişandina serokên êlên Kurdan jî encama hêvîkirî bi xwe re neanî. Serokên êlên Kurdan ku bi Esad re hatin cem hev, ji bilî pêşkeşkirina daxwazên Kurdan, pêşniyaz li Esad kirin ku bi partiyên Kurdan yên siyasî re jî rûne.

Rûpel ▶2 / 5

## Kurdên Ewrûpa

### Zarok û pirzimanî

Zarokên Kurdên ku li derveyî welat dijîn ligel zimanê zikmakî çendîn zimanên din jî fêr dibin û pispor dibêjin, "Baş e, lê..." ▶6

## Kurdistan

### Mexdûrên şer

Beriya 20 salan kurê wan ji malê hat revandin û ji wê demê ve winda ye. Keça yê revandî piştî ku bi bûyerê revandina bavê xwe dihese xwe dikuje û diya wî jî... ▶5






4 191631 701506 00015

9 771869 104000 15

Great Britain

Malpera nû ya Rûdawê vebû

Rûdaw.eu

www.rudaw.eu
info@rudaw.eu

www.arsivakurd.org

### Ji bo hilbijartina Parlamentoya Tirkiyê Kurd li ser bloka Kurdî li hev hatin

# Elçî pê kêfxweş e û Bozyel nîgeran e

▶Serokê KADEP'ê Şerefedîn Elçî: Ev blok ji bo pêşeroja Kurdan girîng e, bi taybet jî ji bo çespandina mafên Kurdan di destûra bê de û ez namzetê Amedê me

▶Serokê HAK-PAR'ê Bayram Bozyel: Ez kirim namzetê Wanê, nekû yê Amedê, herwiha BDP xwe ji îmzekirina bingehên bloka Kurdî didize


Serokê KADEP'ê Şerefedîn Elçî

**Hêmin Xoşnaw**

Duşema borî (11.04.2011) dema serlêdana berendaman ji bo hilbijartinên Parlamentoya Tirkiyê (12.06.2011) qediya û Kurd wê li Bakurê Kurdistanê bi blokek Kurdî ya hevbeş tevlî van hilbijartinên bibin. Di vê bloka ku ji BDP û KADEP'ê pêk tê û çendîn partiyên çep yên Tirk jî tê de cîh digirin, Partiya Maf û Azadiyê (HAK-PAR) tune.

Ev demek dirêj e bi serpereştiya Kongreya Civaka Demokratîk (KCD) guftûgo di navbera partiyên siyasî û rêxistinên Bakûrê Kurdistanê ji bo dirûstkirina blokek Kurdî ya hevbeş ku tevlî hilbijartina Parlamentoya Tirkiyê bibe, dihatin meşandin. Di van hilbijartinên pêş de çavê Kurdan li 40 kûrsiyane. Di hilbijartina borî de BDP'ê tenê 21 kûrsî bi dest xistibûn. Berdevkê KCD'ê Cemal Coşkun ji Rûdawê re daxûyand ku "Pira gihiştina wê armancê, tenê lîstek pirrengî ye." Serokê KADEP'ê Şerefedîn Elçî di daxuyaniyeke ji bo Rûdawê de derbarê dirûstkirina wê bloka Kurdî de got, "Em ligel Partiya Aştî û Demokrasiyê (BDP) gihane rêkeftinê û min jî xwe li Amedê kiriye namzet." Navborî bi awayekî giring behsa vê lîsta hevbeş dike û dibêje: "Tevî ku ev ne rêkeftinek siyasî ye, lê ji bo pêşeroja Kurdan giring e. Bi taybet jî ev blok dikare di çespandina mafê gelê Kurd di destûra nû ya Tirkiyê de rolek giring bileyîze."

### Leyla Zana li Wanê berendam e

Gelek aliyên Kurd li bendê bûn ku Partiya Maf û Azadiyê (HAK-PAR) jî di vê blokê de cîh bigre, lê di rojên dawî de eşkere bû ku HAK-PAR li derveyî vê bloke dimîne û wê bi berendamên xwe tevlî van hilbijartinan bibe. Derbarê sedemên tevlînebûna HAK-PAR'e di vê bloke de, serokê HAK-PAR'e Bayram Bozyel ji Rûdawê re got: "Beriya em bên ser navên namzetan, me dixwest em rêkeftina li ser bloka Kurdî îmza bikin. Lê mixabin hevalên BDP'ê xwe ji vê yekê didizin. Ez serokê partiyek Kurdî me û pêwîst bû navê min di nava namzetên Amedê de bûye, lê navê min li ser lîsteya bajarê Wanê danîn." (Daxuyaniya Bozyel di rûpel 3 de)

Lê Cemal Coşkun diyar kir ku agahdariya wî ji nîgeraniya Bozyel nîne û derbarê berendam nîşandana Bozyel a li Amedê jî got: "Gelek kesan dixwest bibin namzetê Amedê. Hatîp Dîcle ku damezrênerê KCD'ê ye û niha li girtîgehê ye, pêwîst bû li Amedê bibe namzet. Di heman demê de jî Hevseroka KCD Aysel Tugluk û Hevserokê BDP'ê Selahedîn Demîrtaş pêşwext ji bo Amedê bûbûn namzet. Ji ber vê yekê em neçar bûn kesek wekî Hevseroka BDP'ê Gulten Kişanak li Sêrtê û Leyla Zana li Wanê bikin namzet."

Ji bilî serokê KADEP'ê Elçî, di nava lîsteya Bloka BDP'ê hinek kesayetên din jî hene û hemû jî wekî namzetên serbixwe tevlî hilbijartinê dibin. Wekî din kesayetên older ên wekî Altan Tan û Îbrahîm Bîlgîn, herwiha çend girtiyên siyasî, parêzerek Aşûrî, çend rewşenbîr, nivîskar û siyasetmedarên Tirk jî hene. Ji ber vê yekê dibe ku ev lîste bandorê li ser dengderên Kurd û hinek dengderên Tirk jî çêke.

### Anket: BDP li derdora ji sedî 7 e

Xwediyê şîrketa anketan a Gor, Adil Gor bal kişand ser wê yekê ku berî ragihandina bloka Kurdî, bi berdewamî dengên BDP'ê ber bi zêdebûnê ve diçûn, lê "Li gor anketên me dengê BDP'ê ji rêjeya ji sedî 7 zêde nebûye." Lê bi baweriya Gor ev rêkeftin bandorê li ser zêdebûna dengê Kurdan nake, "ji ber xelk dizanin ji bo demekê ye, lê eger ev rêkeftin berî çend mehan hatiba kirin, wê bandorek pir baş hebûye."

Adil Gor derbarê bandora namzetên oldar, nivîskar û rewşenbîrên Kurd di bloka Kurdî de dibêje: "Li herêmên Kurdan bandora van navan pir sinordar e, lê wê li bajarên rojavayê Tirkiyê bandorek baş hebe. Bi baweriya min eger ew lîste li bajarekî wekî Stenbolê 4 kûrsiyan bi dest neyîne jî, 3 kûrsî mîsoger in."

# PYD: Eger Esed biçe, wê Tirkiye Rojavayê Kurdistanê dagir bike

Berpirsyarê Partiya Yekitiya Demokrat (PYD) ê rêxistina Ewrûpayê Abdilselam Mustefa ji Rûdawê re got ku ew li Sûriyê li dijî rejîma Esed di nav çalakiyan de ne û heta mafê Kurdan neyê dayîn ew tekoşina xwe didomînin. Mustefa bal kişand ser têkiliyên navbera Şam û Enqerê û got eger rejîma Esed têk biçe wê Tirkiye Rojavayê Kurdistanê dagir bike.

**Hûn wek PYD li Rojavayê Kurdistanê çi dixwazin?**

Em çareseriyê di çarçoveya naskirina gelê Kurd weke neteweya duyemîn li Sûriyê di destûra bingehîn de dibînin, herwiha ew misogerkirina hemû mafên siyasî û çandî, weke perwedeya bi zimanê dayikê, mafê ragihandin û çapkirinê bi zimanê kurdî dixwazin. Digel pejirandina mafê xwe birêvebirina herêmî ku em jê re dibêjin 'Xweseriya Demokratîk' li Başûr-Rojavayê Kurdistanê, di çaroveya yekpariya erdê Sûriyê de.

**Li Rojavayê Kurdistanê hêza rêxistina we çawa ye?**

Em maf û daxwazên gel diparêzin. Rejîma Sûriyê û ya Tirk jî hêza rêxistina PYD'ê baş dizanin. Em ne tenê piştgirên vê serhildanê ne, lê belê em beşek jê ne. Em ê hemû berpirsyariyên xwe ji bo parastina maf û nasnama gelê xwe bi cih bînin. Ji me re zêde ne girîng e, Beşar Esed serokê Sûriyê be yan na. A herî girîng li cem me ew e ku yên Sûriyê birêve dibin, ta çi radeyê hebûn û nasname û mafên gelê Kurd nas dikin û rêzê jê re digrin. Kî van prensîban bi cih bîne, ser seran û çavan.

**PYD û partiyê Kurd ên din çiqas bi hev re têkildar in?**

Hewldanên me ji bo hevkariyê berê jî hebûn, niha jî hene. Me li hundir û derveyî welêt hin rêze çalakî bi hev re lidarxistin. Em ji hemû şêweyên hevkariyê re amade ne, lê em ti carî ji nasname û prensîbên xwe yên îdeolojîk danakevin. Mixabin, hin alî û hêzên siyasî yên Başûr-Rojava Kurdistanê hene, tiştên ku rejîma Beşar Esed li ser me ferz bike, dixwazin ew li ser me ferz bikin. Ji me re dibêjin al û sembolên xwe yên rêxistinî ramekin, wêneyên Ocalan ramekin. Me ji kesî nexwestiye bila werin bibin weke me. Lê em qebûl nakin ku hinek werin me bikin weke xwe! Gelek metirsî û himberiyên girîng li pêşiya me ne. Ji ber vê ferz e ku hemû hêzên siyasî ji her çar beşên Kurdistanê, li bin banê konferanseke netewî bicivin û stratejiyeke hevbeş deynin û guh nedin berjewendiyên partîtiyê.

Rexneyên Ereb û hinek derdorên din ji bo Kurdan û bi tybetî jî bo PYD'ê hene. Dibêjin PYD di vî warê de bêdeng e. Gelo rast e? Hûn çima bêdeng in? Em weke PYD'ê ne bêdeng bûn. Wê rojên li pêşiya me vê rastiyê baş bide diyar kirin. Min di serî de jî got: em beşek girîng in ji vê serhildanê.

**Ji bo pirsgireka Kurd têkiliyê Esed û Erdogan di kîjan astê de ne?**

Têkiliyên Tirkiyê û Sûriyê ji peymana Edenê ya sala 1998'ê destpêdikin. Niha jî gihîştine asta konseya stratejîk. Em pir bi guman li van têkiliyan dinêrin. Ji ber em dizanin ku konsepteke hevbeş, pilanek hevbeş li dijî tevgera azadiyê, ango PKK'ê - KCK'ê, PJAK'ê, PÇDK'ê û PYD'ê jî di nav de- di navbera Sûriyê, Tirkiyê, Îran û hin hêzên Îraqê de heye. Di serhildana 12'ê Adarê sala 2004'ê de jî Hikûmeta AKP'e piştgirî da rejîma Esed. Îro jî ew guman hene. Ango wê Erdogan, Esed bi tenê nehêle. Eger rejîma Esed têk biçe, wê Erdogan û dewleta Tirk nehêlin Kurdên Sûriyê mafên xwe bi dest bixin. Ger rejîma Esed têk biçe, ne dûr e ku Tirkiye bixwaze bakurê Başûr-Rojavayê Kurdistanê dagir bike.

***Hevpeyvîn: Alan Ken***

Rûdaw
**Rojnameyeke siyasî û heftane**

**Xwedî**
Rudaw Media GmbH

**Sernûser**
Ako Mihemed
akopress74@yahoo.com

**Rêvebirê Nivîsînê**
Nasredîn Akyol
nasredin@rudaw.eu

**Redaksiyon**
Firat Kelehkî
kelehkî@yahoo.com

Mehmet Sebatli
sebatli@hotmail.com

Besam Mistefa
wardoz@gmail.com

Mihemed Tahir
mtahir2011@windowslive.com

**Dîzayner**
Hamdullah Yumlu

**Îdare û belavkirin**
Mustefa Sefîq Edilbî
gare2005@hotmail.de

**Şêwirmendê yasayî û aborî**
Ayhan Çîftçî

**Navnîşan**
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln/Germany

Telefon: +49 (0) 221-26 00 40 02
Telefax: +49 (0) 221-26 00 49 81
www.rudaw.net
info@rudaw.eu

Rûdaw ji bo nivîsên ku bi nav tên weşandin ne berpirsyar e.
© Hemû maf parastî ne

www.arsivakurd.org

Roja 10'ê Nîsanê "Bloka Ked, Demokrasî û Azadiyê" li Amedê di civîneke çapemeniyê de namzetên xwe pêşkêş kir. Bloka navborî li Bakurê Kurdistanê bi yekîtiya Kurdan, li Rojavayê Tirkiyê jî bi namzetên Tirk û demokratan dikeve hilbijartinê.



Wêne: DIHA

# Turk: Dil dixwest HAK-PAR jî hebe

**Amed (Rûdaw) -** Namzetê BDP'ê yê Mêrdînê Ahmet Turk diyar kir ku ew ê li Amedê ji 11 parlamenteran 6'an bi dest bixin û ew ê di meclisê de daxwazên Kurdan xurtir bînin zimên. Turk destnîşan kir ku wan dixwest HAK-PAR jî weke KADEP'ê li ba wan cih bigre. Berbijarên serbixwe yên BDP'ê Ahmet Turk, Sirri Sureyya Onder û Ertugrul Kurkçu derbarê hilbijartina 12'ê Hezîranê de, fikr û ramanên xwe ji Rûdawê re parve kirin.

Hevserokê Kongreya Civaka Demokratîk (KCD) Ahmet Turk, ku namzetê Mêrdînê ye jî, diyar kir ku wan ji bo daxwazên gel bi cih bînin xebateke pir zehmet û berfireh meşandiye û wiha got: "Ji bo me du xalên girîng hene; ya yekemîn yekîtiya neteweyî ye, ya duyemîn jî îtifaqa bi hêzên demokrasiyê yên Tirkiyê re ye. Li gorî min me di herdu eniyan de jî xebateke serkeftî meşand. Em dixwazin ji berê bêtir ber bi pêşerojeke azad û demokratîk ve gavan bavêjin. Îro digel hemû nîqaşan em dixwazin li Amedê ji 11 parlamenteran 6 parlamenteran bi dest bixin. Gelê me girêdayî çand, nasname, azadî û nirxên xwe ye. Em ê bi serkevin."

**Ji bo me du xalên girîng hene: Yekîtiya netewî û îtifaqa bi hêzên demokrat ên Tirkiyê re.**


Ahmet Turk

**Em ê di meclisê de komeke xurtir û dengekî bilindtir derxin holê û vîna pêşerojê ava bikin.**


Ertugrul Kurkçu

### 'Diyaloga bi HAK-PAR'ê re wê bidome'

Ahmet Turk da zanîn ku wan dixwest weke KADEP'ê HAK-PAR jî li ba wan cih bigirta û wiha berdewam kir: "Tevlibûna Serokê Giştî yê KADEP'ê birêz Şerafettin Elçî, manewiyata yekîtiyê xurtir kir. Gelê me yekîtiya neteweyî dixwaze. Ji bo ku em vê daxwaza gelê xwe bi cih bînin, yekîtiya neteweyî ya Kurdan ava bikin, em pir xebitîn. Dil dixwest hevalên me yên HAK-PAR'î jî îro li ba me bûna. Heta dawiyê em li ser gotina xwe ya roja yekemîn ku me ji wan re gotibû, sekinîn. Lê hevalên HAK-PAR'î di merheleya dawî de li cem me cih negirtin. Lê ez bawer dikim ku di rojên pêş de em ê vê yekîtiyê muheqeq ava bikin. Em ê dîsa bi wan re mil bidin hev, bi hev re têbikoşin. Lêgerîna me ya avakirina yekîtiyê wê bidome. Di rojên pêş de jî wê ev pêvajoya diyalogê ya bi HAK-PAR'ê re bidome."

### 'Rojên dîrokî li pêşiya me ne'

Namzetê BDP'ê yê Stenbolê ku derhêneriya fîlmê "Beynelminel" kiribû, Sirri Sureyya Onder, jî da zanîn ku piştî hilbijartinê meclis wê ji muxalefeteke bindest, kedkar û mazlûman re şahidî bike û nêrîna xwe wiha anî zimên: "Li Tirkiyê bi qasî vê blokê li ti derê sazûmaniyeke evqas berfireh û jidil a siyasî tune ye. Ji bo avakirina aştiyê, rojên dîrokî li pêşiya me ne. Bila rêya me vekirî be."

### 'Piraniya namzetên me wê biserkevin'

Namzetê Mêrsînê Ertugrul Kurkçu jî destnîşan kir ku ew bawer dike ku "Bloka Ked, Demokrasî û Azadiyê" bi ser bikeve û wiha axivî: "Ger BDP weke partî biketa hilbijartina û pirsgirêka benda hilbijartinê tunebûya, wê hemû namzetên hatine nîşandin qezenç bikirana. Lê ez di wê bîr û baweriyê de me ku piraniya namzetên me wê dîsa qezenç bikin. Em ê di meclisê de komeke xurtir, dengekî bilindtir derxin holê. Kurd, sosyalîst, jin, kêmarên din wê di meclisê de vîna pêşerojê ava bikin. Bi ya min wê meclis ji komeke pir xurt a muxalîf re şahidî bike."

## "Min got Amed, BDP'ê got Wan"

Serokê HAK-PAR'ê Bayram Bozyel daxuyand ku wan bi BDP'ê re ji bo xebata hevbeş a hilbijartinan danûstandin kirine, lê wan li hev nekirine û hevdîtin bidawî bûne. Bozyel da zanîn ku wî xwe ji bo Amedê wek namzet pêşniyaz kiriye û got, "lê hevalên BDP'ê Amed qebûl nekirin, Wan pêşniyaz kirin, min jî ev yek qebûl nekir." Heta roja 10'ê Nîsanê dihat çaverêkirin ku partiyên Kurd bi yek lîsteyê tevlî hilbijartinan bibin û ji bo vê yekê jî di navbera BDP, HAK-PAR û KADEP'ê de çendîn hevdîtin çêbûn. Lê nûnerên Kurd roja 10'ê Nîsanê li Amedê ji bo diyarkirina namzetan civînek çapemeniyê lidarxistin û di nava wan de Serokê HAK-PAR'ê Bayram Bozyel tunebû. Hevseroka BDP'ê Gultan Kişanak ragihand ku ew li 39 bajaran namzetên serbixwe nîşan didin û bi çendîn hêzên siyasî yên Kurd û çep û demokratên Tirk re xebatên xwe didomînin, ku di nava wan de HAK-PAR'ê tune. Serokê HAK-PAR'ê Bayram Bozyel derbarê mijarê de pirsên Rûdawê bersivand û ragihand ku wan û BDP'ê li hev nekirine. Bozyel wiha axivî: "Xuya ye Kurd hêjî ji bo xebatên wiha ne amade ne. Me dixwest ku karê me yê hevbeş di çarçoveyeke fireh de be, ango wek îtifaqê. Lê hevalên BDP'ê tenê giranî didan ser hevkariya hilbijartinan û diyarkirina namzetan. Me xwest em navekî li vî karî deynin, lê mixabin nebû."

Yek sedemên nelivehkirinê jî wek ku Bozyel destnîşan kir, cihê namzetiya wî bûye, "Ji ber ku Amed bajarê min e û ez jî serokê partiyekî me, Amed jî paytexta me ye, min xwest ez namzetê wir bim, lê hevalan Wan pêşniyaz kirin, min jî ev qebûl nekir û hevkariya me bidawî bu."

Bozyel daxuyakirin ku ew ê bi navê HAK-PAR'ê li 81 bajaran tevlî hilbijrtinan bibin û ew jî wê namzetê Amedê be.


Bayram Bozyel

www.arsivakurd.org

Ahmet Dere

## Divê BDP serkeve



Hilbijartinên giştî ku wê îsal li Tirkiyê çêbibin xwediyê wateyek pir girîng in. Bi taybetî ji bo BDP'ê û herwiha ji bo çareseriya pirsgirêka kurd, girîngiya van hilbijartinan di asta herî bilind de ye.

Bêguman, heya niha jî pirsgirêka kurd hebû, lê belê ti demê weke niha niqaşên derbarê çareseriyê de neketibûn rojeva Tirkiyê. Divê em asta vê mijarê tenê bi rêya medyayê nebînin, xala herî girîng ew e ku giraniya vê pirsgirêkê di nava civakê de çiqas tê dîtin. Nêzîkatiyên hemû civakên li Tirkiyê roj bi roj digehêjin hev û xala wan a navendî çareserî ye.

Heya niha li Tirkiyê saziyek neteweyî ya weke TBMM'ê (Meclîsa Mezin ya Neteweyî ya Tirkiyê) zêde li rola xwe xwedî derneketiye. Lê belê, qasê ku di vî welatî de pêşketin çêdibin û herwiha konjonktûra siyasî ferz dike, wê ji niha bi şûnde rewş biguhere. Di salên pêş de wê TBMM bikaribe li berpirsyartiyên xwe xwedî derkeve. Lewre, hebûna curbecur partiyan, bi taybetî ya partiyên demokrat û pêşketî, dikare vê saziyê bike xwedî roleke mezintir.

Li gorî sîstema heyî, bi taybetî ya benda hilbijartinan ku ji sedî 10 e, kes nizane wê vê carê çend partî bikevin TBMM'ê. Qasê ku ez dibînim, AKP û CHP bêpirsgirêk wê di TBMM'ê de cihên xwe bigirin, lê belê heman tişt ji bo MHP'ê nikare were gotin. Weke tê zanîn, ji ber sedemê benda hilbijartinan, BDP bi namzetên serbixwe dikeve hilbijartinan. Ketina BDP'ê ya TBMM'ê sedî sed e. Ji niha ve em dikarin bêjin, ji 12'ê Pûşberê bi şûn de, wê AKP, CHP û BDP di TBMM'ê de cihên xwe bigirin.

Ji bo ku di salên pêş de pirsgirêka kurd di TBMM'ê de were niqaşkirin û bi rêbazên destûrî çareseriyek were dîtin, divê BDP serkeve. Serkevtinek çawa? Li gorî min, divê ev serkevtin bi kêmanî bi 30 parlementerî pêk were. Eger Koma BDP'ê ji 30 parlementerî pêk neyê, mixabin ew ê nikaribe bibe xwediyê rolek girîng. Lewre, carekê din ez dixwazim bêjim, divê BDP serkeve û serkeve.

Eger BDP nikaribe 30 parlementerî derxe wê çi bibe gelo? Mixabin, carekê din wê ev partî tenê weke saziyeke sivîl meş û mitîngan tevger bike, bi polîsan re bikeve nava gengêşiyê. Bêguman ev jî nabin rêbaza çareserkirina pirsgirêka kurd.

### Alinak derbarê Konên Aştiyê de:

# An dibin cihê sohbetê, an jî bircên şoreşê



Mahmut Alinak

Dema 'Neguhdariya Sivîl' tê gotin, cara ewil navê Mahmut Alinak tê bîra mirov. Alinak çalakiyên Neguhdariyê ji bo asta ku tekoşîna gelê Kurd niha gihayê, pêwîst dibîne, lê dibêje, "Mixabin dereng man." Alinak Konên Aştiyê jî wek çalakiyek di cîh de binav dike û bi hişyarî dibêje, "Li pêşiya BDP'ê du rê hene. Yan wê konên aştiyê tenê bibin cihên sohbetê, yan jî wê bibin bircên şoreşê."

**Rûdaw: Cara yekem kengê û li ku çalakiya Neguhdariya Sivîl pêk hat?**

**Mahmut Alinak:** Me çalakiya yekem çar sal berê li Qersê lidarxist. Em heftiyekê bêyî ku nasname di berîka me de hebe geriyan. Me zimanê fermî protesto kiribû û em tenê bi kurdî diaxivîn. Bi armanca şermezarkirina hikûmetê me li tenekeyan dixist.

**Konên Aştiyê gelo roleke çawa dileyîzin?**

Ez avakirina van konan girîng dibînim. Gel ji malê derdikeve û diçe wir rûdinê, bi hev re diaxivin. Ji bo destpêkê gavek di cîh de ye. Lê divê ev kon bibin wek cihên şoreşê. Divê wek ku hatin avakirin nemînin, divê bibin bingeh ji bo hîn tevgerên din.

Gûman û tirsa min heye ku dîsa bibin wek çalakiya 'Mertalên Zindî' ku nîvco mabûn û bi serneketibûn. Wê demê jî ew çalakî di nava gel de heyecanek mezin çêkiribû, gel dihat, ciwan dihatin, diciviyan û diçûn ber bi çiyayan, lê ew cûreyê çalakiyê bi ser neket û bi dawî bû. Ez hêvî dikim ku Konên Aştî û Demokrasiyê bigihin armanca xwe.

**Hûn helwesta hikûmeta AKP'ê li himberê van çalakiyan çawa dinirxînin?**

Ya yekem, wê hikûmet ti bersiveke erênî nîşan nede. Duyem, beriya ku çalakiyên Neguhdariya Sivîl mehekê tije bikin, divê derbasî asta şoreşê bibin. Wê ev veguhestin çawa bê kirin? Ev jî divê rêvebirên vê tevgerê biryar bidin. Ev cureyê çalakiyan nabe ku bi mehan, bi salan bidomin. Hin çalakî, mînak wek nebikaranîna nasnameyan, axaftina şagirtan a kurdî li dibistanan, hûn dikarin bo demên dirêj pêkbînin. Lê eger we gel derxistibe kolanan, nabe ku hûn zêde dirêj bikin. Piştî ku hûn derketin ser kolanan, divê hûn vê tevgerê bikin gava herî girîng a şoreşê.

**Ev cureyê çalakiyan nabe ku bi mehan, bi salan bidomin. Eger we gel derxistibe kolanan, nabe ku hûn zêde dirêj bikin. Piştî ku hûn derketin ser kolanan, divê hûn vê tevgerê bikin gava herî girîng a şoreşê**

**Ango hûn dibêjin wê AKP vê pirsgirêkê çareser neke...**

Berê siyaseta Kurd xeletiyek kir, hêvî da gel û atmosferek wisa çêkir weke ku di demeke nêzîk de çareserî bê. AKP çareser nake, AKP wê ji vê pirsgirêkê sûd werbigire, xwîna ku dirije vedixwe. AKP ji atmosfere bê çareseriyê, ji metirsiya siyasî sûd werdigire, wiha li ser piyan dimîne. AKP û dewlet ji şerê çekdarî yê PKK'ê sûd werdigrin, ji bo geşbûna vî şerî çi lazim be dikin. Ango dewlet û hikûmet wê wek ku dixwazin çareser bikin, xwe nîşan bidin, lê wê çareser nekin.

Kêmasiya me jî di vê neçareseriyê de heye. Ji ber ku tevgera siyasî nikare zextan li hikûmet û dewletê bike ku ew neçar bimînin çareseriyê bînin. Eger projeyên sivîl yên bi hêz hebin, mirov dikare vê pirsgirêka mezin di salekê de çareser bike.

**Gelo heta mehekê ku ev çalakî nebin bircên şoreşê, wê di nava gel de sarbûnek çênebe?**

Gelê Kurd xwediyê hêz û aramiyek pesindar e; gelê Kurd digel gelek kêmasiyên siyasetê, dîsa jî baweriya xwe bi hêzên xwe yên siyasî tîne. Alîkarî û piştgiriyê didomîne. Ez dîsa dubare dikim, eger çalakiyên konan bi hin çalakiyên din neyê geşkirin, wê kon bibin wek malên partiyê. Wê gavê wê her kes here wir, sohbet bike, sloganan bavêje, ango wê bibin cihên lokal. Lê eger ew kon bibin wek bircên şoreşê, wê herikandina dîrokê bê guhertin. Ji bo siyaseta Kurd, ango ji bo BDP'ê du rê hene: Ya wê kon bibin malên hevdîtin û axaftinê, yan jî wê bibin bircên şoreşê. Divê biryara vê bê girtin.

**Baş e, gelo BDP dikare konan bike wek bircên şoreşê?**

Mixabin ew hêz tune.

**Gelo çalakiyên sivîl ên ku niha tên lidarxistin, taktîkên hilbijartinê ne?**

Ji kerema xwe bihêlin ez li ser vê mijarê tiştekî nebêjim. Tayyip Erdogan di vê mijarê de şîroveyan dike, ji ber wê yekê ez ê ti şîroveyê nekim.

**Em werin pirsa dawî, ya ku her kes ji ker kesî dipirse, lê ti carî nayê pêkanîn. Şertên aştiyeke mayînde çi ne? Li gor we em ê kengê karibin bêjin, "Belê me ev pirsgirêk çareser kir?"**

Aştiya di navbera gur û miyan de, ji bo guran şahî ye, ji bo miyan jî mirin e. Ev ji bo bindestên Kurdan jî, yên Tirkan jî wisa ye. Aştî tune ye! Armanca me ew e ku rayên militarîzmê ji nava civaka me bên rakirin û şoreşa gelên Kurd û Tirk bê avakirin. Wek min li jor got, eger em di demeke kurt de pêdiviyan pêkbînin, em ê karibin di nava salekê de pirsgirêkê çareser bikin. Eger heta îro ev şoreş nehatibe bicîhkirin, divê em kêmasiyê di xwe de bibînin.

*Hevpeyvîn: Medya Deniz*

**Aştiya di navbera gur û miyan de, ji bo guran şahî ye, ji bo miyan jî mirin e.**

**Biyografî**

Alinak di sala 1952'yê de li navçeya Qersê, Dîgorê hatiye dinyayê. Li Zanîngeha Enqerê beşa hiqûq xwendiye. Alinak di 1987'ê de ji Qersê di lîsteya CHP'ê de kete parlamentoyê. Di sala 1989'ê de tevlî Konferansa Kurd a li Parîsê bû û ji CHP'ê hat derxistin. Di heman demê de kete nava xebatên damezirandina HEP'ê. Di sala 1991'ê de bi îttifaqa CHP- HEP'ê bû parlamenterê Şirnexê, paşê di nava xebatên damezirandina DEP'ê de cîh girt. Di sala 1994'ê de hat girtin û piştî 10 mehan ji girtîgeha Ulucanlar a Enqerê hat berdan. Serokê DTP'ê yê Qersê bû û niha jî endamê BDP'ê ye.

www.serxwebun.org

## Rêxistinên cîhanî û navxweyî ji rewşa mafê mirovan li Kurdistanê ne razî ne

*Hawar Ebdûlrezaq Hewlêr - Lêkolînvanek ji Rêxistina Çavdêriya Mafê Mirovan, HRW li Îraqê, li beramberî rewşa mafê mirovan a li Herêma Kurdistanê dilgiran e. Bi baweriya serokê rêxistinek mafê mirovan a Kurdistanê jî, li Herêma Kurdistanê binpêkirinên mafê mirovan di astek "Metirsîdar" de ye. Meha borî tîmek ji Rêxistina Çavdêriya Mafê Mirovan (Human Right Watch) bi serpereştiya lêkolînvanê HRW li Îraqê Samîr Mesqetî serdana Herêma Kurdistanê kirin. Mesqetî derbarê rewşa mafê mirovan li Herêma Kurdistanê ji Rûdawê re ragihand: "Ez li beramberî rewşa mafê mirov dilteng im, ne tenê Kurdistanê, belkî li tevayî Îraqê." Serokê Enstîtûya Kurdistan a bo Mafê Mirov Elî Kerîm jî diyar kir ku li Herêma Kurdistanê binpêkirina mafê mirovan gihaye qûnaxek "Metirsîdar" û wiha pêdeçû: "Pêwîst e ji bo vê rewşê saziyek serbixwe bê damezirandin. Me binpêkirinên li Herêma Kurdistanê tomarkirine û dibe ku em di paşerojê de belav bikin."*



### Serokeşîrên Kurd ji Esad re gotin:

# Ligel partiyan jî rûne!

Serokê êla mala Meriî: Beşar Esad got 'rastî derbarê Kurdan de nedigihiştin min û ezê ji kursiyên Baasiyan kêm bikim û bidim Kurdan di parlamentoyê de.'

**Besam Mistefa**

Yek ji serokeşîrên Kurd ku di civîna ligel serokkomarê Sûriyê Beşar Esad de amade bû, ji bo Rûdawê ragihand ku Beşar Esad gotiye 'rastî derbarê Kurdan de ew negihiştî bû, heya wê dema ku bi xwe serdana Qamişlo kir, herwiha dibêje: "Min ji Beşar Esad re got em ne nûnerên kolana Kurdan in, partiyên siyasî nûnerên kolanê ne û ligel wan jî rûne."

Roja 05.04.2011'ê Serokkomarê Sûriyê Beşar Esad ligel 18 kesayetî û serokeşîrên Kurd û 12 kesayetî û serokeşîrên Ereb û 3 Xiristiyanên navçeya Cezîrê ya Rojavayê Kurdistanê civiya. Ji bo vê civînê sekreterên du partiyên Kurd jî weke kesayetî hatibûn dawetkirin, lê tevlî civînê nebûn.

### Esad Newrozê li Kurdan pîroz kir

Cemal Meriî Ebû Semîr ku serokê eşîra Mala Meriî ya navçeya Aliyan e, yek bû ji beşdarên Kurd di wê civînê de. Ew naveroka civînê ji bo Rûdawê eşkere dike û dibêje: "Pêşî Beşar Esad pîrozbahiya cejna Newrozê li me kir û got 'min nizanibû cejnên we ewqasî xweş in, ji ber rastî nedigihiştin min, eger min bizanibûye ku cejinên we ewqasî xweş in, dihatim û ligel we beşdar dibûm, înşallah sala bê ligel we tevlî cejna Newrozê dibim û pîrozbahiyê li we dikim."

Berovajî salên berê, îsal Hikûmeta Sûriyê ti rêgiriyeke ahengên cejna Newrozê li Rojavayê Kurdistanê nekir, ku bi sedan alên Kurdistanê di wan de hatin bilindkirin. Bi raya çavdêran ev helwêsta hikûmetê bi mebesta tevizandina Kurdan bû, da ku li dijî dewletê serî hilnedin.

Cemal Meriî amaje da ku Beşar Esad zêde pesnê Kurdan da û behsa welatparêziya Kurdan kir û got: "Hûn Kurd di nav çavên min de ne, gelek tiştê derbarê we de nedigihiştîn, an berovajî digihiştîn min, lê piştî ku hatim parêzgeha Heseke û Qamişlo, min berovajî tiştê ji min re dihat gotin, dît."

### Daxwazên Kurdan ên ji Beşar Esed

Serokê eşîran daxwaznameyek 35 xalî dane Beşar Esed. Çend ji wan daxwazan ev in:

1. Kêmkirina zextên ewlehiyê li ser navçeyên Kurdan.
2. Azadkirina girtiyên bûyera Qamişlo yên sala 2004'ê.
3. Vegerandina Kurdên ji kar hatin derxistin a bo ser erkên xwe.
4. Redkirina encamên serjimêriya ne asayî ya sala 1962'yê ya Hesekê.
5. Azadkirina girtiyên ramanî.
6. Tanzîmatdayîna kesên ku zeviyên wan hatine dagirkirin.

Beşer Esed di wê civînê de çend soz dan Kurdan. Wekî Meriî dibêje: "Soz da kesên ku nasname ne dayîn wan, nasnameyê bide wan û ji wan re kar bibîne. Me behsa zeviyên Kurdan ên hatîn dagirkirin kir, Esed jî di bersivê de got 'emê hinek tiştan zû cîbicî bikin, lê hinek wê dereng bikevin û pêwîstî bi demê heye. Lê emê hemûyan çareser bikin."

Di sala 1962'yê de li parêzgeha Hesekê ya Rojavayê Kurdistanê serjimêriyek ne asayî hat kirin û encama wê jî wergirtina nasnameya sor a zêdetirî 150 hezar hevwelatiyên Kurd bû û di tomara serjimêriyê de bi "Biyanî" hatin nivîsandin. Tê texmîn kirin ku niha hêjmara kesên bê nasname gihaye 350 hezar kesî. Herwiha wê demê "Kembera Erebî" bi dirêjiya sinorê li gel Tirkiye û Îraqê ji aliyê Sûrî ve hat dirûstkirin. Bi vî awayî hemû kesên li gundan jiyan dikin veguhestin û Ereb li cihê wan nîştecih kirin. Tê texmîn kirin ku hêjmara Kurdên Rojava û Sûriye 3 milyon e û ji hemû mafên neteweyî bêpar in.

### Soza yekem bicîh anî

Piştî civîna ligel serok eşîran, Beşar Esed yek ji sozên ku dayî wan anî cih û li gor encama lêkolîna komîteyekê û rênmayiyên ku bi wê armancê hatin avakirin, biryara komarî bi hêjmara 49 ji bo dayîna nasnameyê bi Kurdên bê nasname derxist. Tevî ku dana nasnameyan heta radeyekê bû cihê kêfxweşiya gelê Rojavayê Kurdistanê, lê acizbûna gel jî kêm nekir û îniya borî bi hezaran Kurd rijan ser kolanan û gotin ku tenê dayîna nasnameyê ne bes e û azadiya neteweya xwe dixwazin.

Ji bo civîna 5'ê Nîsanê, sekreterê du partiyên Kurd ên Rojavayê Kurdistanê hatibûn vexwendin, ew jî Sekreterê Partiya Pêşvero ya Demokrasiya Kurd Hemîd Derwêş û Sekreterê Partiya Yeksaniya Kurd Ezîz Dawe bûn, lê herdu jî tevlî wê civînê nebûn. Sekreterê Partiya Çep a Kurd li Sûriye Mihemed Mûsa derbarê tevlîbûna herdu siyasetmedarên Kurd a li wê civînê de got: "Dawe yek ji endamên civata siyasî ye ku biryar daye çi şandek di bin navê kesayetî û çalakvanan de be, tevgera Kurd têde amade nabe. Hemîd Hacî Derwêş jî got, ez siyasetmedarim û ne kesek civakime." Mûsa wiha dirêjî da axaftinên xwe: "Çi guftûgoyek di bin navê civakî de bê kirin, em napejirînin. Lê eger bi navê tevgera siyasî ya Kurd bangî me bikin, emê beşdar bibin û emê projeyên siyasî pêşkêşî wan bikin."

Cemal Meriî dibêje, piştî ku civîn bi dawî hatiye wî malavahiya Beşar Esed kiriye û wî ji Esed re gotiye; "Em ne nûnerên kolanên Sûriyê ne. Partiyên siyasî nûnertiya wan dikin, ez hêvîdarim ku hûn ligel wan jî rûnin û dîtinên wan wergirin. Wî jî got: înşallah." Wekî Cemal Meriî behs kir, daxwazek din a wê şanda civakî tevlîbûna Kurdan a di desthilatdariya Sûriyê de bû. Cemal got: "Esed di wê civînê de got, ezê rêjeya Baasiyên li parlamentoyê kêm bikim û bidim Kurdan." Tevî ku Ereb û Mesîhî jî tevlî wê civînê bûn, lê li gor gotina berpirsên Kurd piraniya guftûgoyên civînê derbarê Kurdan de bûn.

### Kesên tevlî civînê bûn

Ji eşîra Cibûr (Ereb) Şêx Ebdûlezîz Mihemed El-Mîselet, ji eşîra Herb (Ereb) Şêx Ebdûlkerîm Salih Ubêdî, serokê eşîra koçeren Mîran (Kurd) Şêx Semîr Paşa, serokê eşîra Şerbiyan (Ereb) Beşar Deham, Metran Hezîre û Fûrat, serokê eşîra Badînan (Kurd) Silêman Hacî Sadûn, serokê eşîra Gabar (Kurd) Yûnis Ehmed Heso, serokê Eşîra Benî Saba (Ereb) Hûsên Hecî û çend kesên din.

### Civîn ji sedî 70 derbarê Kurdan de bû

Mihemed Mûsa dibêje: "Li gor zanyariyên me civîn erênî bû. Ji sedî 70'ê gotinên nava wê civînê derbarê Kurdan de bûn, civînê bi gotina derbarê cejna Newrozê de dest pê kiriye. Beşar Esed soz daye ku sala bê rê bidin ku Newroz ji îsal bi coştir bê kirin." Serokê eşîra Koçerên Mîran Semîr Paşa jî di daxûyaniyeke ligel kanala El-Cezîre derbarê naveroka wê civînê de got: "Serokkomar behsa bûyerên vê dawiyê kir, bi taybet jî meseleya nasnameya bo Kurdan û hilweşandina yasaya berê ya ne asayî. Herwiha got, sala bê wê Newroz bibe cejnek netewî ya hemû gelê Sûriyê. Herwiha behsa bidawîhatina dosyeya girtiyên siyasî jî kir."

www.arsivakurd.org

▶Zarokên Kurdên Ewrûpayê di nava pir zimanî de mezin dibin

▶Divê zimanê zikmakî di navbera salên 3-6'de baş bê fêrkirin

▶Zarok dikarin di heman demê de fêrî sê zimanan bibin

▶Dema ku dê û bav jihev diqetin û malbat perçe dibe, fêrbûna zarokan jî lawaz dibe



Ciwan û bavê xwe Haci Sutçu

### Pirzimanî ji zarokan re dibe bingeh

# 'Dêbav kîjan zimanî baş zanibin bila wî fêrî zarok bikin'

Azad Dîcle

Malbatên ku li derveyî welatê xwe dijîn dema dibin xwediyê zarok, dikevin nava pêvajoyeke taybet, ku malbatên li welat dijîn vê pêvajoyê nas nakin. Ev yek eger dê û bav ji netewên cuda bin û li welatekî sêyemîn bin, bêhtir girantir dibe. Zarokên ku li welatên Ewrûpa têne dinyayê dema dest bi axaftinê dikin xwe di nava jiyaneke pir zimanî de dibînin. Pispor vê yekê ji bo pêşketin û perwerda zarok wek bingeheke baş dinirxînin û bi balkişandî dibêjin "eger dê û bav rolê xwe yê ziman jibîr nekin û baş pêkbînin."

Ciwan vê havînê dibe 6 salî. Ew ji bavekî Kurd û dayîkek Tirk li Almanya, nêzîkê bajarê Stûttgartê, Schwaibish Gmund hatiye dinyayê. Ciwan niha sê zimanan, kurdî, tirkî û almanî dikare fahm bike û biaxive.

Bavê Ciwan ê ji Amedê Haci Sutçu ji roja jidayîkbûnê û heta niha bi kurê xwe re hertim bi kurdî axiviye, dayîka Ciwan jî berê pê re bi tirkî axiviye û niha jî tirkî û almanî. Haci Sutcu ji rewşa pir zimanî ya kurê xwe şanaziyê dike û dibêje, "Min her tim hewl da ku Ciwan kurdî wek zimanê yekem û bingeh fêr bibe, dema ku mezin bû bila ti zehmetî û xerîbiyê nekişîne. Ez bixwazim jî nexwazim jî ji ber derûdorên me gelek Tirk hene wê Ciwan fêrî tirkî û almanî bibûya, lê eger min di zarokatiyê de wî fêrî kurdî nekira wê paşê zehmetî derketana."

Ciwan niha diçe Bexçeyê Zarokan û li wir bi mamosta û hevalên xwe re almanî diaxive. Haci Sutçu radigihîne ku j ber dayîka Ciwan jî li Almanya jidayîk bûye û almaniya wê wek zimanê zikmakî ye, wan beriya dibistanê bi hêsanî Ciwan fêrî almanî kirine. Wek ku bavê Ciwan, Haci Sutçu diyar dike Ciwan bi hevalên bavê xwe yen mêr re bi kurdî, bi dayîk, xaltî û mirovên aliyê diya xwe re bi tirkî û bi zarokan re jî bi almanî diaxive.



Azad û bavê xwe Abîd Yalçin

### Azad û Rojda niha tenê kurdî diaxivin

Malbateke din a Kurd jî li Almanya, li bajarokê Hattingenê diji û xwediyê du zarokan e. Azad du sal û nîv e, xwişka wî Rojda jî 6 mehî ye. Bav û diya Azad û Rojdayê, Abîd û Zîlan ku ji Erziromê ne, biryar dane ku heta dibistanê bi zarokan re tenê kurdî biaxivin. Derbarê rewşa kurê xwe Azad de, Abîd Yalçin ragihand, "Azad niha kurdiyek pir zelal diaxive. Dikare pirsan bike, bersivan bide û hevokên ji 4-5 gotinan pêk tên, bîne ziman."

**Zarok li dibistanê fêrî îngilizî û çend zimanên din jî dibin, lê ti ziman nabe weke zimanê ku di navbera 3-6 salî de fêrbûne**

Li gor agahiyen ku Abid Yalçin dide, zarokên xizmên wan hemû bi kurdî diaxivin û ev jî bingehek gelek baş e ku zarokên wan baş fêrî kurdî bibin. Derbarê fêrbûna Azad a almanî de jî Yalçin dibêje ku Azad di demeke nêzîk de dest bi Bexçeyê Zarokan kiriye û wiha dom dike. "Jixwe beriya ku Bexçeyê Zarokan dest pê bike diya Azad hêdî hêdî pê re bi almanî axivî da ku li wir zehmetî nekişîne." Niha Azad bi dayîka xwe re û kesên biyanî re almanî diaxive û kesên nas re jî tenê kurdî. Malbata Yalçin ji Azad gelek ezmûn wergirtine, radigihînin ku wê zaroka xwe ya biçûk jî bi heman rengî perwerde bikin.

### "Zarok dikarin di heman demê de sê zman fêr bibin"

Lê şansa hemû zarokan û malbatan wek a Ciwan, Azad û malbatên wan tune. Zaroken ku dê û bavên wan jihev diqetin û malbata wan perçe dibin, di fêrbûna ziman de zehmetiyan dikişînin. Li gor zanyarî û agahiyên ku Sosyal Pedagog Kader Dogru dide, ku ew bi xwe jî dayîka du zarokan e, fêrbûna zarokan a ziman eger mirov rêyên wî zanibin pir hêsan e, wekî din dibe pirsgirêkeke demdirêj. Dogru nêzîkbûna Haci Sutçu û Abîd Yalçin rêbazeke rast dibîne û dibêje, "Eger malbatên penaber ên ku du zimanan bikartînin, bixwazin zarokên wan di nava zimanan de gêj nebin û perwerdeyeke baş bibînin divê hîn tiştan baş zanibin. Mînak, bav kîja ziman baş zanibe divê hertim bi wî zimanî nêzî zarok bibe, dê kîja ziman baş zanibe wisa bi zarok re biaxive û divê tevlî hev nekin. Bav hertim bi kurdî, dê hertim bi tirkî biaxive, zarok hebûna du zimanan ji hev cûda dike û herduyan jî bi hev re dikare fêr bibe."

### "Divê ziman neyên tevlîhevkirin"

Dogru ku tevî du zarokên xwe li Bochumê dijî dide zanîn ku zarok di navbera 3-6 salan de dikarin di heman demê de sê ziman bi hêsanî fêr bibin, "eger ku bi rengekî sîstematîk bên danîn." Dogru wiha dom kir. "Zarok li dibistanê ji bilî almanî fêrî îngilizî û zimaneke din ê Ewrûpayê jî dibin. Lê ti ziman nabe weke zimanê ku beriya temenê 6 salî hatibin fêrbûn. Ew dibe zimanê dil, rih û hestan." Dogru ji bo perwerdeya salên dirêj li dibistanan, girîngiya fêrbûna zimanê zikmakî dubare dike û bal dikişîne ser rewşa zarokên malbatên perçekirî: "Ew zarok di fêrbûna ziman û geşbûna hestan de hertim zehmetiyan dikişînin. Jineke ciwan a 26 salî keça xwe ya sê salî dibe cem doktor, jiber ku zarok hîn nikare biaxive. Paşê min jî ew jin nas kir û pirsgirêka wê fahm kir. Bi zilamê xwe re gelek pirsgrêkên wê hebûn, jihev nû qetiyabûn, Kurd bû, lê kurdiya wê ne baş bû û bi zarok re ji ber stresê her tim bi kurdî, tirkî û almanî axiviye. Ango her sê zimanan tevlî hev kiriye û zaroka wê ligel ku gelek zîrek bû jî, nikaribû bi zimanekî tiştek bixwaze. Lê dema ku zarok şandin Bexçeyê Zarokan di nava 4-5 mehan de dest bi axaftina almanî ya rast kir."

www.arsivakurd.org

## ’Konên Aşîtiyê’ li Berlînê jî hebûn



**Alan Ken** Berlin - Ji dema destpêkirina çalakiyên ’Konên Aşîtiyê’ li Bakurê Kurdistanê, li paytextên Ewrûpayê jî ji bo piştgiriya çalakiyên li Kurdistanê çalakî tên lidarxistin û çadir tên vekirin. Yek ji van çadiran di 5’ê Nîsanê de li paytexta Almanya Berlinê hatibu vekirin. Çalakiya ku di bin slogana “Kurd statuya xwe dixwazin“ hatibû destpêkirin, 5 rojan domand û bi sedan kesan serdana çadirê kir. Ev çalakî dawiya hefteya borî jî bi meşekê ku derdora 2 hezar kesan tevlî bûn, bi dawî bû. Parlamenterê Parlamentoya Federal Cristina Buchholz, serokê YEK-KOM’ê Yuksel Koç, hunermend Hozan Aydin û gelek kesên din jî di meşê de amade bûn. Christina Buchholz li vir axivî û wiha got: “Ez ji bo piştgiriya we li vir im û têkoşîna we pîroz dikim. Divê Almanya li vî welatî Kurdan nas bike, li ser wan qedexeyan rake. Ev tişt pîvanên demokrasiyê ne.“

### “Kincên gerîlla“ qedexe ne!

Di meşê de polîsên Berlinê ji ber qedexeya li ser PKK’ê nehişt ku alên KCK û posterên Abdullah Ocalan bên hildan. Lê dema çend cîwanên Kurd xwestin al û posteran hildin, polîsan mudaxele kir û hinek ji wan kirin bin çavan. Bûyerek balkeş jî di dawiya meşê de qewimî: Du cîwanên bi navê Îbrahîm Alkan û Mintas Çalkan ji ber ku kincên kurdî li xwe kiribûn, hatin binçavkirin. Sedema binçavkirinê jî wisa hat eşkerekirin: kincê wan yên gerillayên PKK’ê ne.

# 21 salan li Almanyayê dijî, dîsa jî li ber paşveşandinê ye




Wêne: Rûdaw

**Munchen (Rûdaw) -** Mehmet Hanifi Bulu yê 51 salî ji 29.03.2011 ve di girtîgeha JVA Munchen-Stadelheim de ye û bi paşveşandina bo Tirkiyê re rûbirû ye. Biryarek Daîreya Koçberî û Penaberan a Almanya (Bundesamt für Migration und Flüchtlinge) ku Mehmet Hanifi Bulu ji ber xebata wî ya siyasî li Almanyayê ji radestkirina Tirkiyê dijarê Munchenê hewl didin ku wî radestî Tirkiyê bikin. Rêxistinên mafên mirovan nerazîbûnên xwe li hemberî paşveşandina Mehmet Hanifi Bulu tînin ziman û balê dikşînên ser kar û xebata wî ya siyasî li Almanyayê û dibejin ku eger Mehmet Hanifi Bulu radestî Tirkiyê bê kirin, ew ê li wir rastî îşkenceyê were.

Di sala 1995’ê de Mehmet tevlî rast, ji ber guhertinek qanûnî li Almanyayê, di 2008’ê de paşve hat kişandin. Mehmetê ku weke aktîvîstekî PKK’ê tê naskirin, ji dema binçavkirinê xwe ketiye greva birçîbûnê.

Mehmet Hanifi Bulu yê bavê 2 zarokan, ku bi eslê xwe ji Bakurê Kurdistanê, ji bajarê Mûşê ye, ev 21 salan li Almanyayê, li bajarê Munchenê dijî. Tevî vê yekê jî rayedarên Daîreya Biyaniyan a bavçalakiyek protestoyî bûbû û ji ber wê yekê ew hatibû cezakirin û biryara paşveşandina wî hatibû dayîn. Lê ji ber xebata siyasî, Mehmet weke penaberekî siyasî mafê parastina ji paşveşandinê wergirtibû. Di 2008’ê de biryara qebûlkirina Mehmet weke penaberekî siyasî û mafê parastina ji paşveşandinê şûnde hat kişandin û bûyera di 2005’ê de weke çalakiyek terorîstî hat binavkirin û Mehmet Hanifi Bulu ne hêjayî mafê penaberiyê hat dîtin. Ji ber ku Mehmet di dema diyarkirî de biryara dadgehê îtîraz nekir, ew niha bi paşveşandinê rûbirû ye.

Di bûyerên mîna ya Mehmet Hanifi Bulu de, heta niha Dadgeha Îdarî ya Bayernê, tevî biryarên paşveşandinê jî, penaber paşve neşandine. Eger Mehmet Hanifi Bulu paşve bê şandin, ev ê bibe cara yekemîn ku Kurdekî naskirî ku ji ber xebata siyasî mafê penaberiyê wergirtiye, paşve bê şandin.

Di 7’ê Nîsanê 2011’ê de jî hewla paşveşandina Mehmet Hanifi Bulu hat dayîn, lê wî li ber xwe da û paşveşandina wî hatiye paşvexistin, lê metirsiya paşveşandinê hîn didome. Ji bo piştgiriya Mehmet Hanifi Bulu û şermezarkirina siyaseta dewleta alman li hemberî penaberan, di 12’ê Nîsanê de xwepêşandanek li pêşberî Wezareta Navxwe ya Eyaleta Bayern hat lidarxistin û nezîkî 100 Kurd û Alman tê de beşdar bûn.

3 mehan Rûdawê bêpere bixwîne.
Agahiyên zêdetir di rûpela 12 de.

## Kurd jî êdî bi Facebookê dicivin




**Koln (Rûdaw) -** Malpera parvekirina civakî Facebook piştî ku di xwepêşandanên li welatên Ereb de ji bo komcivînan bi awayekî çalak hat bikaranîn û encamên erênî derxist holê, niha jî bala Kurdan dikişîne. Komeke Kurdên li derveyî welat bi armanca rawestandina cezayê darvekirinê li Îranê, di Facebookê de platformek tomar kirin û di nava du heftiyan de hejmara endamên xwe gihandin heta 6200 kesan. Endamên platforma ku bi almanî ‘Stopp Hinrictungen im Iran’ (Li Îranê Darvekirinê Rawestînin) heftiya borî roja 9’ê Nîsanê li bajarê Almanya Kolnê li dijî darvekirina girtiyên Kurd xwepêşandana yekem lidar xist. Di belavok û nameyên endamên platformê de ku li ser Facebookê ji hev re parve dikin, metirsiya darvekirina Şêrko Moarfî tînin ziman û dibêjin, “Eger em karibin bibin deng, wê rejîma Îranê dev ji darvekirinê berde û em ê rê li pêşiya darvekirina ciwanên Kurd bigirin.”

Di nivîsên platformê de zimanên kurdî, tirkî, almanî, îngilîzî û farizî tên bikaranîn, ji saziyên dewletan re name tên şandin û piştgiriya mirov û saziyên sivîl ên navnetewî tên pêşkêşkirin.

Reklam

Bi me cihêwaz bibin.

Ji bo reklam, dîzayn û çapkirinê em di xizmeta we de ne.

Reklama televizyon û rojnameyan, flayer, afîş, name, eşyayên xelatan, kovar, pirtûk, malperên înternetê, dawetname…htd.
Bi kurtasî ji bo her pêwîstiyek we di aliyê reklam û çapkirinê de…

Hûn jî xwe bighînin me…
Hûn jî cihêwaziyê hîs bikin!

graf-adolf-str. 70a
40210 düsseldorf
tel.: 0211 - 17957982
fax: 0211 - 17957983
www.dassign.de
info@dassign.de

DAS | SIGN®
werbeagentur & verlag gmbh
mobil : 0173 - 270 67 81

# Li welatên Ereban qedexe, li pêşangeha Hewlêrê azad in

Hinek ji wan pirtûkan ku li vir tên nîşandan li Sûriyê cezayê darvekirinê li ser wan heye

Wezareta Rewşenbîrî ya Hikûmeta Herêma Kurdistanê li ser ti pirtûkekê sansur nedaniye

**Hewlêr (Rûdaw) -** Pirtûkên ku li welatê dîktatorî û totalîter dikevin ber sansûrê û rê li ber firotina wan tê girtin, li Pêşangeha Navdewletî ya Pirtûkan li Hewlêrê bi azadî tên pêşkeşkirin. Di şeşemîn pêşangeha pirtûkan de ku dezgeha Meda li Hewlêrê saz kiriye, gelek ji van pirtûkan hatibûn nîşandan.

Şeşemîn Pêşangeha Navdewletî ya Pirtûkan li Hewlêrê, di 2'ê Nîsanê de bi piştgiriya Wezareta Rewşenbîrî ya Hikûmeta Herêma Kurdistanê û bi rêveberiya dezgeha El-Meda, li salona pêşangeha navdewletî ya Hewlêrê hat vekirin û di 11'ê Nîsanê de jî bidawî hat. Di pêşangeha îsal de, zêdeyî 500 hezar navnîşanên pirtûkan hatin pêşkêşkirin ku ji 20 dewletên cîhanê 190 xaneyên pirtûk û dezgehên çap û belavkirinê tê de beşdar bûn.

Nûnerê Şirketa Nobles a Lubnanî bo çap û belavkirina pirtûkan Mîran Evdilwahîd ragihand ku ev şeş sal in pêşangeh tê vekirin, "Bi taybetî di aliyê çêkirina têkiliyên çandî de tiştekî pir baş e. Hêviya me wisa bû ji welatên din zêde weşanxane beşdar bin, ji ber piraniya yên ku niha beşdar in ji dewletên Erebî hatine."

Ev pêşangeh ji bo dîtina ronahiyê ji bo gelek pirtûkên ku ji ber sedemên siyasî û çandî li welatên xwe ketine ber sansûrê, dibe wek pencereya azadiyê. Berpirsê Dezgeha Meda li Herêma Kurdistanê Îhab Ebdulrezaq jî got ku asta vê pêşangehê wê pir bilind e û wiha dom kir: "Ti kêşeya me tune. Li Herêma Kurdistanê demokrasî heye û rê li ber ti kitêbê nayê girtin." Mîran Evdilwahîd dibêje: "Di vê pêşangehê de hinek pirtûk hene ku ji aliyê hinek weşanxaneyan tenê bi armanca bazirganiyê hatine derxistin, hinek pirtûk jî hene li welatên xwe rastî kêşeya yasayî hatine, lê di vê pêşangehê de hatine pêşkêşkirin û tên firotin.


Wêne: Rûdaw

**Pirtûkên sansûrkirî û qedexekirî, li Hewlêrê li benda xwînêrên Kurd in...**

Hinek dezgeh hene bo bilindkirina navê hinek kesan pirtûkekê derdixin ku têkiliya wî kesî ne ji dûr û ne ji nêzîk bi wê pirtûkê ve nîne, yan pir caran pirtûkek tê derxistin da ku kesayetiyeke siyasî pê navdar bikin. Hinek pirtûkên din hene bi mebesta şikandina nivîskarekî tên derxistin, nemaze nivîskarên ku di jiyanê de nemane, diçin kitêbeke ast nizim bi navê wî nivîskarê navdar çap dikin û difiroşin."Lê li piraniya welatên Ereb, ji bo qedexekirin û sansûrkirina pirtûkan, sedem ne tenê ev in. Li Îraqa heyama Saddam Huseyîn de pir caran dîtina pirtûkekê li malekê ji bo windkirina xwediyê wê bes bû. Lewra jî pirtûkên metirsîdar di bin erdê de dihatin veşartin û di sînorekî berteng de ji destekî digihan destekî din. Bi ser de jî hinek caran nîşandana pirtûkekê li dikaneke an jî firotina pirtûkan weke xefikê bû. Ev rewş hêjî li beşekî zêde yê cîhana Erebî didome.

Nûnerê xaneya pirtûkên erebî li Sûriyê Nîzal Ebûd wiha axivî: "Pir pirtûk hene niha me pêşkêş kirine li vir û kiryarên wan jî zêde ne, ji ber rê li ber me vekiriye û kesî ji me re negotiye qedexe ne, lê li Sûriyê qedexe ne. Piraniya kitêbên ku li Sûriyê qedexe ne li ser meseleya mezhebî û siyasetê û li ser Cihûyan hatine nivîsandin. Niha gelek kitêbên me hene em di vê pêşangehê de difiroşin ku li Sûriyê hikûmet wan bigire cezayê wê pir tund e û dikarim bêjim heta hukmê darvekirinê jî diçe, hem ji bo nivîskar, hem ji bo firoşker."

Serokê Komîteya Hevkariya Pêşangeha Navdewletî ya Kitêban li Hewlêrê Şêx Seîd Şakelî got: "Me weke Wezareta Rewşenbîrî ya Hikûmeta Herêma Kurdistanê li ser ti pirtûkekê sansûr nedaniye û ji bo pirtûkên qedexekirî ti lîsteya me tune."

## Sînema




# Beriya Tuncelê, Silo şeqam li dewletê xist

Fîlm behsa jiyana Siloyê dîn ê li kolanên Nisêbînê dijî, dike û bêaqiltiya dewletê nîşan dide

**Alî Guler**

Fîlmê kurdî yê bi navê 'Meş' li Bakurê Kurdîstanê û Tirkiyê ket vizyonê. Mijara fîlmê ku jî aliyê derhenêrê ciwan Shîar Abdî hatiye kişandin, li Nisêbînê derbas dibe û behsa çîrokeke 12 Îlonê dike.

Van rojan li gelek sînemayên Tirkiyê û Bakurê Kurdîstanê fîlmek kurdî di vîzyonê de ye. Fîlmê bi navê "Meş" behsa 12 Îlonê dike. Derhênerê fîlm Shîar Abdî ye û lîstikvanên wî jî Selamo û Abdullah Ado ne. Hemû zimanê fîlm bi kurdî ye û li Nisêbînê hatiye kişandin.

Fîlm mijara xwe ji çîrokek rast girtiye, lê 90 deqîqeyên fîlm ji aliyê estetîka sînemayê ve gelek pirsgirekên wî hene. Ji kamerayê bigre û heta montajkirinê gelek kemasiyên fîlm hene. Ji xwe ev fîlm, berhemê yekemîn a derhênêr û ekîba wî ye. Lê mijar polîtîk e û bi çavek din li 12'ê Îlonê û bêdengiya cîvakê mêze dike.

Qehremanê fîlm Xelîlo ji Nisêbînê ye û temenê wî jî derdora 45-50 salan e. Bi xwe dîn e, li kolanan dijî. Di nav cîvakê de jî xwe re cîh nabîne. Ew jî têkiliyên xwe bi zarokan re çêdike. Di bajarokê de bêdengiyek mirî heye. Baya 12 Îlonê ya sar di nav gel de tê û diçe. Kes newêre dengê xwe bike. Giranî û bandora artêş û leşkeran li ser cîvakê heye.

Xelîlo herwiha çiqas dîn be jî kirin û gotinên wî ji kesên biaqil girîngtir in. Ew bi zarokan re têkildar e, jî wan hez dike bi wan re heval e. Xelîlo nexweşê cîgarê ye. Cîgare ji bo wî hertişt e, rojek Xelîlo ji devê serleşkerekî Tirk cîgarê direvîne. Leşker jî li Xelîlo dixin, gava ew ji wan difilite sîleyek di li rûyê serleşker dide û direve. Ev sîle dibe sembola fîlm. Lê rojek din qedexekirina kolanan e û Xelîlo vî qedexebûnê nasnake û dertê kolanan.

Leşker, gule ber didin Xelîlo. Ew derketina kolanan bi canê xwe dide. Ji xwe mirovek dîn çî ji qedexebûnê fahm dike? Ev jî beaqiltiya dewletê ye. Fîlm jixwe bal dikişine ser bêaqiltiya dewletê. Lê çi dibe bila bibe sîla Xelîlo wek tolhildanek tê xuyakirin. Tolhildana Kurdan a ji dewletê.

Dema vîzyona fîlm jî gelek girîng e. Ji ber ku şeqama parlamentera Kurd Sabahat Tuncel a li himberê polîs jî di van rojan de bû.

# Kardaşyan ji Tirkiyê aciz e




Modela Amerîkî ya esilermen Kim Kardaşyan, jiber ku wêneyên wê di kovara Cosmopolitan a tirkî de hatine weşandin, xwe aciz kir.

Kim Kardaşyan demên berê jî di derbarê komkujiya Ermeniyan de helwestên tûnd li himberê Tirkiyê nîşan dabû û di înternetê de kampanyaya îmzeyan birêvebiribû. Model û stêrka Tv'yan Kim Kardaşyan demek berê ji bo kovara Cosmopolitan pozên taybet dabû, lê heman wêneyên wê di kovara Cosmo ya tirkî ya meha Nîsanê de jî hatin weşandin û ev jî bû sedemê nerazîbûna Kardaşyanê. "Min nizanibû ku wêneyê min wê li Tirkiyê jî derkevin, ez gelek aciz im." Kardaşyan ragihand ku berpirsên Cosmopolitan jê re yek bi yek navê welatan gotine ku wêneyên wê li wir bên weşandin, "Lê tenê navê Tirkiyê negotin."

Yek sedemê acizbûna Kardaşyanê ew e ku roja komkujiya gelê Ermen 24'ê Nîsanê nêzîk bûye. Herwiha lobîvanê Ermen Mark Geragos jî jiber wêneyên Kim Kardaşyanê dane kovara tirkî, kovara Amerîkî Cosmo protesto kir.




www
Malpera Rûdawê ya nû vebû!
www.rudaw.eu
Bitikînin!



# Dem dema şehrikan e

Modaya îsal ji bo jinan cil û bergên klasîk tîne pêş, bi taybetî jî şehrik, egal û melhefên rengîn. Li gor birêvebirê fîrmaya Beymenê, Refig Devidas roj bi roj jin îsal dikarin wiha xwe bi şehrikan bixemilînin.

Roja duşemê şehrikê bavêjin dora stûyê xwe; roja sêşemê bi qevda destê xwe ve bipêçin, çarşemê bi çentê xwe ve girêdin, pêncşemê bi şehrikê porê ve binxêfin, înê li nava xwe girêdin, roja şemiyê bi kuma xwe ve girêdin û roja yekşemê jî jin dikarin şehrikeke rengîn di nava cakêtê xwe de nîşan bidin.



# Malbata Messî rastê êrîşê hat

Du kesên nenas li bajarê Arjantînê Rosarioyê bi guleyan êrîş birin ser mala Messî. Xaniyê ku rastê êrîşê hat mala birayê fûtbolvanê navdar ê Barcelonayê Lonel Messî, Matias Messi ye û dayîka wan Celia Messî jî li wir dijî.

Li gor nûçeya ku La Capital de Rosario ragihand, du kesên ku li motorsîkletê siwar bûne roja duşema borî heta 100 metreyan xwe nêzîkê mala birayê Leonel Messî kirin û bi çekan gule rijandin ser malê. Li gor agahiyan qet nebe 8 gule li derî û pencereyan ketine lê ti kes nemiriye û ti kes birîndar nebûye. Derbarê êrîşker û sedemê êrîşê de polîsê bajarê Rosario ti agahiyek neda. Bajarê Rosario nêzîkê 340 km ji paytexta Arjantînê Buenos Aires dûr e.

Reklam
Reiseburo Eskicioglu
Seferên Otobûsê ji
• Munchen - Stenbol
• Stenbol - Amed, Hewlêr, Silêmanî, Enqere û gelek bajarên din...
Herwiha ji bo geştên we bilêtên balafirê bi erzanî




Adres: Herman-Lingg-Str. 11 80336 München
Tel.: 089 - 534 975
089 - 534 902
089 - 538 94 47
Fax: 089 - 538 06 24
e-mail: reiseburo_eskcioglu@web.de
web: www.yazicioglutturizm.com

www.arsivakurdi.org

### Hevseroka BDP´ê Gultan Kişanak:

# Armanca me ewe ku em bi kêmanî 40 kursiyan bidestbixin

BDP di nav hewlan de ye ku di hilbijartinên Parlamentoya Tirkiyê yên 12.06.2011 de bi berendamên ji beşên civakê yên cude û bi îtîfaqên ligel partiyên Kurdan û partiyên çep û Tirkên demokrat bi awayekî herî bi hêz derkeve pêşberî dengdêran. Gultan Kişanak behsa van hewldanan kir.

Her roja ku diçe, 12 Pûşperê ku roja hilbijartinên Parlamena Tirkiyê ye, nêzîk dibe. Hevseroka Partiya Aştî û Demokrasî BDP, Gultan Kişanak dibêje ev qunax mîna destpêka damezrandina Komara Tirkiyê di sala 1923'an e, ji ber piştî van hilbijartinan wê destûreke nû bê danîn û Tirkiye ji nûve bê avakirin. Loma ew di wê baweriyê de ye ku Kurd divê mîna salên bîstan neyên xapandin û vê derfetê jî ji dest nedin. Gultan Kişanak ku li buroya şaxê Amedê ya BDP ji bo Rûdawê axivî û peyameke wê ji bo serok û siyasetvanên Başûrê Kurdistanê hebû: ew jî ewe ku di hilbijartinan de piştevaniya BDP´ê nekin, lê bila piştevaniya AKP´ê jî nekin.



Wêne: Rûdaw

**Rûdaw: Bi baweriya we niha pirsgirêka kurd li Tirkiye di çi qunaxê de ye?**

**Gultan Kişanak:** Pirsgirêka kurdî li Tirkiyê di qunaxeke gelek zehmet û aloz de derbaz dibe. Ev sed sal in Kurd li Tirkiyê xwediyên tabloyeke geleke dramatîk in. Piştî milmilaneke dirêj, niha dewlet gihiştiye astekê ku hebûna Kurdan naskiriye, lê naxwaze ku vê nasandinê bike qalibekî destûrî û yasayî. Kurd îro gihiştine astekê ku êdî ne mumkîne înkara wan bê kirin. Sexteyiya vê qunaxê di wê yekê de ye dema dewlet destûrê dide me ku em cilên kurdî li xwe bikin û bi kurdî baxivin, vêca hin alî ji me re dibêjin binerin dewletê dest ji siyaseta înkarkirinê berdaye, êdî ji vê zêdetir hûn çi dixwazin? Lê ku maf di çarçova destûrê de neyên parastin, wê ti wateyeke van mafan di praktîkê de nebe. Ji bo mînak mafê jiyanê, her kes dizane ku di warê teorîk de her kes xwedî wî mafî ye, lê ev tişt di destûrê de tê nivîsandin, çima? Ji bo ku were garantîkirin. Ji ber ku li her ciyê ku yasa bicih nebe, îmkana behskirina maf jî tune. Loma jî niha Kurd milmilanêya guhertina destûrê dikin.

**Lê em dikarin li ser sê daxwaziyên sereke yên Kurdan li hev bikin: 1) Dabînkirina nasnameya kurdî di çarçovê yasa û destûrê de. 2) Garantîkirina mafê perwerdeya bi zimanê kurdî. 3) Dabînkirina mafê xwebirêvebirinê (otonomî).**

**Çi stratejiya we ji bo vê yekê heye?**

Em milmilaneke firealî didin meşandin. Yekem, em kar ji bo avakirina yekîtiya Kurdan dikin. Ev pir giring e, ji ber ku aliyê himberî me hertimî ev yek kiriye hêncet û dibêje ku hemû Kurd daxwaza xwendina bi zimanê kurdî nakin. Loma em kar ji bo wê daxwaziyê dikin û lihevcivîna hemû Kurdan li ser vê xalê gelekî giring e. Yekîtiya netewî ji yekîtiya siyasî pêknaye, ango ne merce ku em hemû di çarçova yek programa siyasî de bicivin. Dibe ku em hemû derbarê cîhanê de ne xwedî yek dîtin bin û yek boçûn jî bo çareseriyê nebe. Lê em dikarin li ser sê daxwaziyên sereke yên Kurdan li hev bikin, ji wan: yekem, dabînkirina nasnameya kurdî di çarçovê yasa û destûrê de. Duyem, garantîkirina mafê perwerdeya bi zimanê kurdî, sêyem, dabînkirina mafê xwebirêvebirinê (otonomî).

**Gelo ev wê pêk were?**

Belê, Kurd bi giştî wan sê xalan rewa dibînin. Em eger îro pirs ji wan Kurdên ku dengê xwe didin AKP'ê bikin ka ew xwendina bi zimanê kurdî dixwazin, wê bibêjin çawa em naxwazin, em jixwe bêtir dixwazin. Herwiha piştevaniya mafê otonomiyê jî dikin, lê dema em derbarê çawaniya bicihanîna van tiştan jê dikin, dibêjin bisekinin, bila bi xwe ew maf bidestve bên, yan dibêjin hêşta zûye. Loma em giringiyeke zêde didin yekîtiya netewî. Duyem, ji bo bidestanîna wan mafan di destûrê de, em milmilaneke bihêz dikin. Ji ber ku di pêşerojek nêzîk de wê pêwîstiya Tirkiyê bi guhertin û demokratîbûnê hebe, ne tenê ji ber pirsgirêka kurdî, lê bi sedema gelek pirsgirêkên din jî. Bo vê yekê jî destûreke nû bo Tir<kiyê tê amade kirin. Vêca di vê çarçoveyê de eger daxwaziyên Kurdan di vê qunaxê de di nava destûa nû de neyên bicîkirin, dibe ku em careke din derfetan ji dest bidin. Heman derfet di salên 1920'an ji Kurdên Bakûr re hat, wê demê ku destpêka damezrandina Komara Tirk bû, dewletê fêlbazî li Kurdan kir û sozên xwe yên jî bo misogerkirina mafên Kurdan cîbicî nekirin. Gelek ji wan meseleyên ku îro gotûbêj li ser nehatiye kirin, di serdema Mistefa Kemal de bi ferehî gotûbêj li ser hatibû kirin. Lê piştî ku bûn xwedî desthilatek mezin, êdî înkara hemû sozên xwe yên ligel Kurdan kirin. Niha jî ku Dewleta Tirk dixwaze ji nûve xwe avabike, pêwîste Kurd yekîtiya xwe ava bike û nekeve nava heman davên ku salên 1920'an de ketibûyê. Ji bona wê yekê em ê hewl bidin opozisyoneke sivîl a fereh ava bikin, em ê hewl bidin cadê ji bo çalakiyên sivîl bikar bînin. Ji bilî vê yekê ti çekên din li ber destên me tune ne. Ev şêweyekî demokrasiyê ye û mafekî rewa yê opozisyona demokratîk e. Em di heman demê de hewl bidin bi heman şêwe rê li destpêkirina şerê çekdarî jî bigirin. Siyaseta înkarkirina Kurdan li Tirkiyê ev 80 sale şer diafirîne, 80 sale Kurd dijber derdikevin û ji aliyê dewletê tên kuştin, loma em hewl didin wê milmilanê ne li çi<yayan lê li bajaran bidomînin.

**Yek ji wan berpirsên Kurd ên ku li ser dosyeya KCK tê darizandin, dibêje ev doz pêkhatiye ji qunaxa siyasîkirina PKK'ê. Hûn vê dîtinê çawa dinirxînî?**

Nexêr, tiştekî wiha rasterast tune. Ew kesên ku îro li ser dosyeya KCK'ê li Tirkiyê tên darizandin, hemûyan bi şêweyekî yasayî karê siyasî kirine. Wan karê siyasî kirine û hewl dane zemîna karê siyasî fereh bikin. Îro bi hezaran tên darizandin ku hejmara wan ji hejmara girtiyên darbeya sala 1980'an bêtir e. Li gor yasaya ku li serdema Hikûmeta AKP'ê derketiye, kesên ku ne endamên PKK'ê ne, lê ji ber ku boçûnên wan nêzîkî yên PKK'ê ne, ew weke endamên wê partiyê tê cezakirin.

**Çalakiyên sivîl wê çi bandorê li hilbijartinên Hezîranê bikin?**

Em hilbijartinan weke derfetêkê dibînin ji bo bihêzkirina wê opozisyona demokrasiyê. Çend opozisyona demokrasî û siyasî bihêz bibe, em ê bêtir bibin xwediyên îmkanên çareserkirina pirsa kurd. Di van hilbijartinan de em ê bêtir daxwaziyên xwe yên siyasî bixin ber guhê gel û piştevaniya wan jê re misoger bikin. Em ê di heman demê de hewl bidin di wan hilbijartinan de grûpeke bihêz li parlamenê ava bikin ji bo ku em bikarin pirsgirêka Kurd ji zemîna şer berbi zemîna siyaseta demokratîk bibin.

**Dewlet pêwîst e li şûna gotûbêjkirina ligel Mexmûr û Qendîl, gotûbêjan ligel Amedê bike.**

**Hûn dikarin wê yekê pêk bînin?**

Armanca me ew e ku em bi kêmanî 40 kursiyan bidest bixin. Eger zextên zêde li ser me pêkneyînin û dengên me winda nekin, ev yek ne gelekî zehmet e. Di dema hilbijartinên şaredariyan jî me got armanca me 100 şaredarî ne û me gihand 100 şaredariyan. Em ê hewl bidin hejmara dengên xwe li hemû Tirkiyê zêde bikin û bi praktîk rêjeya ji sedî 10 derbas bikin. Em ê hewl bidin encamekê bidest bixin ku ew ji xwe şerm bikin û êdî wê rêjeyê ji holê rakin.

**Lêkolînerê Tirk Taha Erdem dibêje, eger BDP di van hilbijartinan de weke partiyek beşdar bibe, lê ne wek berendamên serbixwe, ew ê bikare rêjeya ji sedî 10 derbas bike?**

Belê, ew şîroveya wî gelekî rast e.

**Nexwe hûn çima weke BDP bi lîste beşdar nabin?**

Ew lêkolîn û referandûmên ku me pêkanîne, herwiha ew zanyariyên ku ji dost û saziyên demokratîk dighin me, wê yekê îspat dikin ku em dikarin rêjeya ji sedî 10 derbas bikin. Lê em nikarin li ser her sindoqeke dengdanê çavdêrekî deynin ji bo ku dengên me winda nekin, ew ji me re zehmet e, bi taybetî li bajarên mezin ên Tirkiyê. Li bajarên weke Kirşehir û Eskîşehir alîgirên me deng didin me, lê vedîtina çavdêran ku bikarin xwedî li dengên me derkevin, gelekî zor e. Ango pirsgirêkeke me ya teknîkî heye û di vê qunaxê de ew zehmet e. Gumana me ji wê yekê heye ku dema em bi lîste beşdariyê bikin û çavdêrên me kêm bin, êdî dengên me bidizin û me li bin rêjeya ji sedî 10 bihêlin. Eger em bêjin ku pêwîstiya me bi 4 milyon dengan heye, ew dikarin bêjin 100 dengên we kêm in ji bo derbaskirina wê rêjeyê. Loma em naxwazin di vê qunaxa siyasî ya hestiyar de wê rîzîkê bikin.

**Li Stenbolê bi tenê çavê we li çend kursiyan e?**

Li gor lêkolînên hevalên me û li gor wan rapirsiyên ku me pêkanîne, ez di wê baweriyê de me ku em dikarin li Stenbolê bi tenê 4 kursiyan bidest bixin. Stenbol li ser sê navçeyan hatiye dabeşkirin, li herdu navçeyên yekem û duyem em ê kursiyekê bidest bixin û li navçeya sêyem, ku berê xenim Sebahet Tuncel kursiyek bidest xistibû, çavê me li du kursiyane, ji ber ku di hilbijartinên şaredariyê de li wê navçeyê me 150 hezar deng bidest xistin. Li Stenbolê her kursiyeke parlamenê pêwîstî bi 75 hezar dengan heye.

www.arsivakurd.org

## Rojnamevanê şehrezayê warê gaz û petrola Îraq û Kurdistanê Ben Lando:

# Rewş wiha bidome wê şîrketên biyanî birevin

▶Rezerva petrola Herêma Kurdistanê li gor texmînan 45 Milyar bermîl in

▶Rewşa welatekî ne ewlekar be, bandor li ser aboriyê çêdibe û şîrketên biyanî li wir namînin



**Hawar Ebdulrezaq**

Nivîskar û rojnamevanê Amerîkî, Ben Lando, ku di sektora gaz û petrola Iraq û Herêma Kurdistanê de şehreza ye ragehand ku pêwîst e berpirsên Kurd di warê gaz û petrolê de ron bin û got ku sedemê nehatina şirketên navdar û mezin ên petrolê bo Herêma Kurdistanê ew e ku eger bên Kurdistanê, hikûmeta Bexda navê wan dixe lîsteya reş.

Ben Lando ku niha edîtorê malpera taybet Iraqoilreport e û heta niha gelek raport û lêkolîn çêkirine, di hevpeyvîneke de ligel Rûdawê radigihîne eger rewşa ewlekariya Herêma Kurdistanê ji ber bûyerên vê dawiyê berbi xirabiyê here, dibe ku veberhênerên biyanî bitirsin û berê xwe nedin Herêma Kurdistanê: "Eger rewş weke niha bimîne, li her welatekî eger hejmara xwepêşandanan zêdetir bûn, dikarin bêjin wê demê bandor li ser rewşa aborî çêdibe û eger bandor li ser rewşa ewlekariyê hebe ew jî dibe sedemê nîgeraniya veberhênerên biyanî."

### Ligel 41 şîrketan 37 girêbest hene

Li gor gotina Wezareta Çavkaniyên Xwezayî ya Herêma Kurdistanê ku di salnameya xwe ya taybet de ragehandiye, heta niha ligel 41 şirketên biyanî 37 girêbestên hilberîna gaz û petrolê îmzekiriye, ku ser bi 17 welatên cuda ne. Bi baweriya Lando, baştir e karbidestên Hikûmeta Herêma Kurdistanê rontir bin: "Tê têbînkirin ku piraniya welatên cîhanê di sektora petrolê de karûbarên wan bi awayekî giştî nehênî ye û ne zêde zelal e, lê ew welatên ku di warê petrolê de bêtir qazanc dikin weke mînak Norwêj, sektoreke wê ya zelal a petrolê heye, lê ev jî têkiliya wê bi welat û berpirsan ve heye."

### Aboriya Herêma Kurdistanê bi petrolê ve girêdaye

Bi dîtina Ben Lando pêwîst e Hikûmeta Herêma Kurdistanê jib o vejandina warên din kar bike bona da ku tenê pişta xwe bi dahata gaz û petrolê girê nede: "Pir girîng e Hikûmeta Herêma Kurdistanê bi awayekî giştî girîngiyeke zêde bide aboriyê, nemaze jî sektora gaz û petrolê, jiber ku aboriya Kurdistanê tenê pişta xwe bi petrolê ve girê nede."

Li gor gotina Hikûmeta Herêma Kurdistanê petrola yedek a Herêma Kurdistanê digihe 45 milyar bermîlan. Ji sala 2003'ê ve bi giştî 49 bîrên petrolê di nav sînorên Herêma Kurdistanê de hatine lêdan, lê hê jî şirketên navdar ên cîhanê di vî warî de weke şirketa Shell û Total berê xwe nedane Herêma Kurdistanê, lê li başûrê Iraqê hene. Bi baweriya Ben Lando, ev bi nakokiya navbera Herêma Kurdistan û hikûmeta Bexdayê de girêdayî ye: "Sedemê nehatina van şirketên mezin bo Herêma Kurdistanê ew e ku ev şirket bên vê herêmê kar bikin, li navçeyên din ên Iraqê wê navê wan bikeve lîsteya reş, ji ber vê yekê naxwazin rastî vê pirsgirêkê bên."

---

**Abdullah Ocalan ragihandiye ku gotûbêjên li Îmraliyê gihane astekî bilintir û gotûbêj li ser pêngavavêtinên praktîkî tên kirin. Bi baweriya we ew çi pêngav in?**

Birêz Ocalan dixwaze bi dewletê re protokolekê derbarê du teweran îmze bike. Yekem: tewerê demokrasîbûnê, ango di rêya demokrasîbûnê re çi bê kirin. Duyem: meseleya aştiyê ye, çi tê kirin ji bo bicihbûna aramiyê? Wiha diyare ku ew gotûbêj gihane astekî bilind. Tevî ku heta îro ji aliyê hikûmet û dewletê ti daxuyaniyeke fermî nehatiye dayîn, lê dîtina min derbarê daxuyaniyên dawiyê yên Ocalan ev e.

**Eger pêngavên demokratîk bên avêtin û PKK pêngavan ji bo çekberdanê neavêje, em ê wê demê helwestê bigirin û rexneyan lê bikin.**

**Hûn di wê baweriyê de ne ku piştî hilbijartinan, PKK wê di meseleya dest ji çekberdanê ti guhertinekê di siyaseta xwe de bike?**

Di wê derbarê de pir caran PKK'ê ragihandiye: Hûn pêngavan ji bo çareserkirina doza Kurd bavêjin, em ji bo destjêberdna ji çekan amade ne. Ev axaftin çendîn caran ji zimanê berpirsên mezin ên PKK'ê dubare bûye. Baweriya me jî bi wê yekê heye, em dixwazin ji bo derxistina rastî û nerastiya wan sozan derfetên bikêrhatî bên pêkanîn. Eger pêngavên demokratîk bên avêtin û PKK pêngavan ji bo çekberdanê neavêje, em ê wê demê helwestê bigirin û rexneyan lê bikin, lê niha ew yek girêdayî wan pêngavên demokratîk e, yên ku pêwîst e bên avêtin. Ji ber wê yekê jî piştî hilbijartinan wê çavên hemûyan li destûra ku nû tê amadekirin bin. Cîbicîkirin û necîbicîkirina mafên Kurdan di destûra nû de, wê rola yekalîker bilîze di meseleya destberdana ji çekan. Ji ber ku nabe em wê yekê jî bîr bikin ku beriya damezrandina PKK'ê binpêkirina mafên Kurdan bûbû sedema berdewambûna şer û tûndutîjiyê, îro jî bi heman şêwe eger mafên Kurdan di destûrê de neyên bicîkirin wê careke din şer dirust bibe, vêca ev şer bi navê PKK'ê be yan bi navekî din be. Ev jî ne tenê ji bo Kurdan, lê bo hemû neteweyên dinyayê wiha ye. Her neteweyeka çend milyonî, dema mafên wî bên binpêkirin, wê demê şer û tûndûtîjî dest pê dikin.

**Hin kes di wê baweriyê de ne ku eger biryara destberdana ji çekan hat dayîn, pêwîst e hêzên PKK'ê demekê li ciyekî weke Mexmûrê bimînin. Dîtina we çi ye?**

Ez vê yekê rast nabînim, lê pêwîste di serî de bi hezaran siyasetvanên Kurd bên azad kirin, rêjeya ji sedî 10 ya beşdariya di hilbijartinan de ji holê rabe, biryara xwendina bi zimanê kurdî bê dayîn. Ev tişt sedema van tengasiyên niha di holê da ne. Eger ew pêngav neyên avêtin, çek jî ji aliyê PKK'ê nayên danîn. Heta niha operasyonên derveyî sînor, girtina birêz Abdullah Ocalan û anîna wî bo Tirkiyê û gelek pêngavên din hatine ceribandin, lê ti ji wan awayan serneketin. Îro jî eger bi heman şêwe hizra wê yekê bikin ka ewê çawa PKK'ê ji nav bibin, li şûna ku hizra vedîtina rêyekê bikin ji bo çareserkirina pirsgirêka kurdî, wê careke din bê encam bimîne û dawî li vê rewşa qeyranî ya Tirkiyê nayê. Ev rêyeke bê derketine û çareserî çênabe. Di heman demê de li şûna danûstana ligel Qendîl û Mexmûrê, pêwîst e gotûbêj ligel Amed be. Di warê demokrasîbûnê de divê pêngavên ron û berbiçav bên avêtin.

**Hûn proseya vebûna CHP'ê ya li himber Kurdan çawa dibînin?**

Ez wê yekê weke propagandeya hilbijartinan dibînim, ji ber ku CHP bi tevahî di nava Kurdan de reş bûye. Di bajarekî mezin ê weke Amedê de ku bêtirî 2 milyon kesan tê de dijîn, ew partî herî zêde 200 dengan bi dest dixe. Dewlet vê dûrketina CHP'ê ji Kurdan weke metirsî dibîne û hewl didin ku CHP careke din hurmeta xwe di nav Kurdan de bidest bîne. [...] CHP eger bixwaze pirsgirêka kurdî çareser bike, qet ne pêwîste ew pirsa gel bike ka ev pirsgirêk wê çawa bê çareser kirin, ji ber ku CHP ji hemû partiyên bêtir dizane ka bersiva wê pirsê çi ye. CHP eger di maweyê 85 salên borî de fêm nekiribe ka wê çawa pirsgirêka kurdî bê çareser kirin, wê ji niha û pêşde jî qet fêm neke.

**Bila siyasiyên Başûrê Kurdistanê piştevaniya BDP nekin, lê em daxwazê ji wan dikin ku bêaliya xwe rabighînin.**


Wêne: Rûdaw

**Ti peyameke we ji bo Herêma Kurdistanê heye?**

Bi nerîneke dîrokî, Kurdên Bakûr û yên beşên din berpirs in ji avakirina yekîtiyeke netewî. Nabe ti Kurdekî Bakûrî bêje ez ji Kurdên Bakûr berpirs im û peywendiya Kurdên Başûr bi min tune. Yan berevajî, bêje ez berpirsê Kurdên Başûr im û peywendiya min bi Kurdên Bakûr tune. Loma ez di wê baweriyê de me ku sazkirina konferansek netewî û bi kêmî eger li ser hin bingehan jî lihevhatin hebe, ew pir girîng û pir buha ye. Ez dizanim ku ev ne karekî hêsan e, ji ber ku dewlet dixwazin destê xwe di wî karî werdin, lê di vê qunaxê de dikare di wê semtê de pêngavan bavêje. Ji aliyekî din em li Tirkiyê berbi hilbijartinên parlamenî diçin, dem demê di nav medya tirkî xebera wê yekê tê belavkirin ku PDK û YNK pişgiriya AKP'ê dikin, yan dibêjin serokekî Kurd daxwazê ji Kurdên Bakûr dike ku dengên xwe bidin AKP'ê. Ew vê yekê dijî Kurdan bikar tînin. Loma em hêvîdar in ku siyasiyên Başûrê Kurdistanê di dema hilbijartinan de, bi kêmî bila bi şêweyekî eşkere peyama wê yekê rabighînin ku ew alîgiriya ti aliyan nakin, ji ber ku ev yek di hilbijartinên berê de weke kartekê bikar hat. Em nabêjin bila piştevaniya berendamên serbixwe yên BDP'ê bikin, lê em daxwazê ji wan dikin ku bêaliya xwe rabighînin.

*Hevpeyvîn: Hêmin Ebdulla*

# Kurek wenda, keçek kuştî, dayikek birîndar



▶Di sala 1991'ê de kurê wan Îbrahîm hat girtin û niha winda ye.

▶Keça Îbrahîm xwe kuşt, diya wî ji aliyê polîsan ve hat birîndarkirin.

▶Bav, Ahmet Gunden: Du rê lipêşiya me hebû. An xiyanet an jiyana bi rûmet. Em dev jî vê dozê bernadin.

**Bawer Çem** Amed

Leşkerên Dewleta Tirk 20 sal berê avêtin ser maleke Kurdan û Îbrahîm Gunden binçav kirin. Ev 20 sal in ku ji Gunden ti agahî nayê standin. Bi salan şûnde keça Gunden piştî wêneyê bavê xwe dît nekarî îdare bike û xwe kuşt. Diya Gunden piştî 15 salan ji hêla polîsan ve bi guleyê hate birîndarkirin û birayekî Gunden jî kete girtîgehê. Bûyerekê malbatek ji hev belawela kir.

Di şerê di navbera gerîllayên PKK'ê û Dewleta Tirk de, heta niha bi hezaran gundên Kurdan hatin şewitandin, bi milyonan Kurd hatin koçberkirin û dewletê 17 hezar Kurd jî bi awayeke kiryar nediyar kuşt, revand û di gorên komî de veşart. Yek ji van malbatên wendayan jî malbata Gunden e. Ev çîroka malbatekê ye ku di malê de kesekî ku bedel nedaye nemaye. Dê, zarok, bav, kur, keç, heta sewal û ajalên wan jî bedel dane. Çîroka vê bûyerê di sala 1991'ê de li gundê Qenderhela ser bi Hezroya Amedê dest pê dike. Weke di gelek bûyerên windayan leşkerên Tirk saet di 12.00'ê şevê de davêjin ser gund. Di serdana malê de Îbrahîm Gundenê bavê 8 zarokan ji aliyê leşkeran ve tê binçavkirin. Ji ber ku ev ne serdagirtina yekemîn e malbat di nava leşkeran de Ustegmen Kenan Şahîn û Başçawîş Murat nas dike.

Malbata Gunden rojek piştre diçin qereqola navçeyê û pirsa kurê xwe dikin. Lê Ustegmen Kenan Şahînê ku ew binçav kiriye, heqaret û tedayî li malbatê dike û bi gotina "Hûn behsa çi dikin? Me kurê we binçav nekiriye. Hûn nebûyan li Dewleta Tirk dikin. Dewleta me dewleteke bi edalet e, tiştekî wisa nake", malbatê berderî dike.


Wêne: Rûdaw

**'Em tenê hestiyên wî dixwazin'**

Malbat digel hemû hewldanan ti agahî bi dest naxe. Kurê wan li ber çavên wan tê windakirin û nikarin ti tiştekî bikin. Salek piştre weke ku ev yek têr nake careke din leşkerên Tirk davêjin ser gund. Îcar hemû mal, milk, zevî û bostanên malbata Gunden dişewitînin. Birayê Îbrahîm, Kemal Gunden ku ev 20 sal in li pey ronahîkirina aqûbeta birayê xwe ye, da zanîn ku wî derbarê mijarê de raporek daye rayedarê demê yê herî mezin Suleyman Demîrel lê du roj piştre ev rapora wan li nava sergoyê Amedê hatiye dîtin. Kemal Gunden got ku hemû kuştinên kiryar nediyar, revandin û gorên komî bi fermana rayedarên herî payebilind ê dewletê ve pêk hatine û wiha axivî: "Heta du sê salên ewil jî hêviya me hebû ku birayê min bi saxî bê malê. Lê niha ti hêviya me nemaye. Em dizanin ku kuştine. Lê qet nebe em dixwazin hestiyên wî bibînin. Bila goreke ku em rojên pêncşem û îniyan biçin ser û dua bikin hebe."

**'Keçê xwe kuşt, dê hate birîndarkirin'**

Dayik Meryem Gunden a 70 salî jî got ku ev 20 sal in kezeba wê dişewite, dilê wê xwîn digirî û wiha axivî: "Vê dewletê konê me li ser konan rakir. Mala me bela kir. Ev 20 sal in her şev ez li wêneyê kurê xwe dinêrim û digrîm. Dema ku kurê min birin 8 zarokên wî hebûn. Yek hê yek salî bû, bavê wê qet nayê bîra wê. Yek jî di hemila diya xwe de bû. Wê qet bavê xwe nedîtiye. Keçeke wê Songulê di 99'an de dema wêneyê bavê xwe dît, dîn û har bû. Bi demanceyê xwe kuşt. Kurê min Huseyîn jî ev 5 sal in di girtîgehê de ye, 10 sal ceza xwariye. Keça wî niha li çiyê gerîlla ye. Zarokên herdu birayan jî perîşan bûne, em nizanin em ê çi bikin." Dayik Meryem jî di 2006'an de, di dema bûyerên 28'ê Adarê de ku 3 roj li Amedê dom kirin û 11 kes tê de mirin, ji hêla polîsan ve bi guleyê hate birîndarkirin. Meryem Gundena 70 salî 18 rojan di nexweşxaneyê de ma û derbarê polîsan de doz vekir. Polîsan jê xwest ku doza xwe paşve bikişîne, lê wê dev ji doza xwe berneda û doza xwe didomîne.

**Li pêşiya me du rê hebûn: Xiyanet û rûmet**

Bav Ahmet Gunden (76) jî ev 20 sal in ku êş û azara windakirina kurê xwe dikişîne. Ahmet Gunden bal kişand ku neviyên wî perîşan, feqîr û belengaz in û wiha berdewam kir: "Sûcê me Kurdbûna me ye. Li pêşiya me du rê hebûn; yan me wê li gelê xwe xiyaneta bikira, yan jî me wê rêya rûmetê hilbijarta.

Me birçîbûn, tazîbûn, feqîrî, kuştin, birîndarkirin, zindankirin, her tiştî da ber çavê xwe û me rêya duyemîn hilbijart. Em ti caran nikarin xiyanetê li gelê xwe bikin.

Di şûna ku her roj bê rûmet bijîm de, bila ez rojek bi rûmet bimirim çêtir e. Em ti caran dev ji vê dozê bernadin."


**Kampanya aboneyan hat dirêjkirin** — 3 Meh bê pere

Rûdaw bi helkefta meha Newrozê kampanyek nû destpê kiribû û ev kampanya hat dirêjkirin. Heta dawiya Nîsanê bibe abone û 3 mehan bêpere Rûdawê bixwîne. Piştî 3 mehan abonetî otomatîk bi dawî dibe. Ji bo abonetiyê forma jêr ya abonetiyê dagire û ji Rûdawê re bişîn. Zûtir û hêsantir bi rêya e-mail dibe: navê xwe, hejmara telefona xwe û navnîşana xwe ji **info@rudaw.eu** re bişîn û di zûtirîn demê de Rûdaw dighije ber destê we.

## Abonetiya Rûdaw

Ez dixwazim ji bo dema

☐ Şeş mehan ☐ Salekê ☐ Vekirî

bibim aboneyê/ya rojnameya Rûdaw.

Rojnameya min heftane bişînin vê navnîşanê

Nav : ____________________
Paşnav : ____________________
Navnîşan : ____________________
____________________

Telefon a min : ____________________
E-Mail a min : ____________________

Buhayê abonetiyê ji vê kontoyê bikşînin;

Hejmara kontoyê : ____________________
Şîfreya bankê (BLZ) : ____________________
Bank : ____________________
Xwediyê kontoyê : ____________________

Dem û cîh: ____________ Destnîşan: ____________

Anjî ez ê bihayê abonetiyê bişînim ser kontoya Rûdawê ya li jêr û dekontoya wê ji navnîşana Rûdawê re bişînim.

Bihayê abonetiya salekê ji bo nav Almanya: 60Euro
Bihayê abonetiyê şeş mehan ji bo nav Almanya: 30Euro
Ji bo abonetiya derveyî Almanya, pêwendî ligel Rûdawê deynin.

**Hesabê Rûdaw**
Rudaw Media GmbH
**Bank** Deutsche Bank Köln
**Konto Nr** 2450161
**BLZ** 37070024

**Navnîşan**
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln / Almanya
**info@rudaw.eu**

## Lîgê destpê kir, DalKurd ne amade ye, lê Kizil: Ligel seqetan dîsa em bi hêvî ne

**Rûdaw (Dalarna) -** Li Swêdê lîga tîmên amator roja 16’ê Nîsanê destpê dike. DalKurd jî maça xwe ya yekem a sezona 2011’ê ligel Karlstad BK dileyîze.Serokê Klûba DalKurdê Ramazan Kizil ragihand ku ji fûtbolvanên wan 7-8 seqet hene û du fûtbolvanên nû ku transfer kirine wê di maça yekemîn de cîh negirin. Ji van herdu fûtbolvanan yek DalKurd ê ji Nîjeryayê transfer kiriye û jiber ku heta niha vîzeya Swêdê nestandiye, nehatiye wir û wê di maça ligel Karlstad BK’ê de neleyîze. Li gor agahiyên ku Kizil dan Rûdawê, transferê duyem jî DalKurdê ji tîma Orebro kiriye û ev fûtbolvanê 20 salî ku berê di Lîga Superetten de leyîstiye, ji ber seqetiya xwe wê demekê nikaribe bileyîze. Kizil herwiha ragihand, “Di antrenmanên amadekariyê de jî 7-8 fûtbolvanên me seqet bûn, eger ji wan tenê 2-3 kes karibin tevlî maça yekem bibin, ti metirsiya me namîne. Hêviya me heye, em ê maçê bistînin û em mecbûr in ku bistînin.” Wê di maçên Rûdawê de pankart û amblema Rûdawê jî bên daleqandin û Kizil got, “Kesên ku dixwazin wek sponsor reklam bidin me, em amade ne navên wan di maçan de pêşkêş bikin”

# Diyarbakirsporê li pey xwe trajediyeke mezin hişt!




**Bawer Çem** Amed

37 xebatkarên klûba Diyarbakirsporê ji ber ku 2 sal in heqdestê xwe nastînin, ketin grevê û dev ji kar berdan. Xebatkaran diyar kirin ku eger pereyê xwe nestînin, ew ê dest bi greva birçîbûnê bikin.

Tîma Diyarbakirspor ku di sezona borî de ji Lîga Superê ya Turkcelê ket û îsal di Lîga Bank Asyayê de têdikoşiya, ji vê lîgê jî ket. Di vê pêvajoya ku serokê klûbê Çetîn Sumer îstifa kir, Walîtiya Amedê dest danî ser klûbê û mufetîş ji bo lêkolînkirinê hatin peywirdarkirin de, derkete holê ku xebatkarên klûbê ev 2 sal in heqdestê xwe wernegirtine. Ji aşpêjên klûbê heta masor û hisabgir, bi tevahî 37 xebatkarên klûbê dest bi grevê kirin û dev ji kar berdan. Xebatkarên klûbê her serê sibehê tên li cihê karê xwe bi awayekî komî disekinin û careke din êvarê diçin mala xwe.

### ‘Çavên zarokan li destê wan e, lê destvala ne’



**Meryem Karagoz**

**Çar zarokên min hene, hemû jî diçin dibistanê. Em sibehan nanê rijî dixwin, êvaran jî cîran xwarinê didin me. Pêlava zarokekî min tune.**

Yek ji kesê ku heqdestê xwe nestendiye, alavkar Beşîr Budak e. Ew 18 sal in li vê klûbê dixebite û ji bo serkeftina Diyarbakirsporê kedeke pir mezin daye. Budak sedema çalakiya xwe wiha vegot: “Di demên borî de bi her awayî me piştgirî da Diyarbakirsporê. Bi awayeke matematîkî eşkera bû ku Diyarbakirspor ji vê lîgê ket. Ev 2 sal in meaşê me nadin. Ji ber vê yekê em mecbûr man dest bi vê çalakiyê bikin. Heta niha me yek qirûş pere ji klûbê negirtiye. Demekê, di çarçoveya projeyekê de, SODES’ê 6 mehan 550 TL pere dan me. Ew pere jî hate birîn. Êdî em şerm dikin li rûyê zarokên xwe binêrin. Em diçin malê, di destê me de qetekî nan tune ye ku em bibin wan. Em li ber zarokên xwe serê xwe xwar dikin, em şerm dikin li nava çavên zarokên xwe binêrin.”

### ‘Pere tune ye, peyatî diçin malê’

Aşpêjê klûbê Nasir Bayram jî yek ji van mexdûran e. Ew jî 11 sal in di Diyarbakirsporê de aşpêjiyê dike. Digel ku xwarinê pir xweş çêdike jî, ji ber bêperetiyê ev demeke dirêj e li mala wan xwarineke baş neketiye ser tûp. Bayram tiştên hatine serê wî wiha anî zimên: “Wê rojê xebatkareke jin binê pêlava xwe nîşanî me da, pêlava wê qetiyaye. Heqê rê tune ye ku li erebeyê siwar bibe û biçe mala xwe. Bi peyatî diçe û tê. Em ê ji vir û şûnde nexebitin. Heta ku destê alîkariyê dirêjî me nekin, em ê kar nekin.



**Beşîr Budak**

**Ev 2 sal in meaşê me nadin, em mecbûr man dest bi vê çalakiyê bikin. Êdî em şerm dikin li rûyê zarokên xwe binêrin.**

**37 xebatkarên klûbê 2 salan heqdestê xwe nestendine**

Bi taybetî jî bang li Walî û Şaredarê Amedê dikim, bila xwedî li me derkevin.” Budak got ku ger meaşê wan nedin, ew ê dest bi greva birçîbûnê bikin.

### ‘Deynê xwe neda, hecîz hat ser malê’

Yek ji paqijvana klûbê Kîbar Tunç jî heman êşê dikişîne. Tunç ku dayika 4 zarokan e û bî ye, ji ber deynê xwe nikare di ber dikanan re derbas bibe. Wê wiha behsa çîroka xwe kir: “Çar zarokên min hene, zilamê min tune ye. Deynê min pir e. Ji ber ku min nekarî ji vir pere bigrim, min her tiştên ji bo malê deyn kir. Ez ji vir pere negrim, ez ê nikaribim deynê xwe jî bidim. Niha ez li vir nan dixwim, zarokên min li malê birçî ne. Nan distînim, firûn, dikan nan nadin min. Ji ber ku min heqê av û ceyranê nedaye, hecîz hatiye ser malê me. Em perîşan bûn.”

### ‘Bi pêlava xwîşka xwe diçe dibistanê’

Yek ji xebatkaran Meryem Karagoz ku diya çar zarokan e, diyar kir ku pêlava zarokekî wê tune ye ku pê bike û wiha axivî: “Mêrê min dev ji min berdaye. Çar zarokên min hene, hemû jî diçin dibistanê. Ez li wan dinêrim. Serê sibehan nanê rijî (tisî) dixwin. Êvaran cînarên me ji me re xwarinê tînin. Pêlava zarokekî min tune ye. Ji ber ku ew danê nîvro diçe dibistanê, xwîşka wê dema nîvro ji dibistanê tê, pêlava xwîşka xwe pê dike û diçe. Em şerpeze bûn. Her roj bi zarokên xwe re digirîm. Em nizanin em ê çi bikin.”



**Kibar Tunç**

**Deynê min pir e. Ez ji vir pere negirim nikarim deynê xwe jî bidim. Jiber min perê av û ceryanê nedaye hecîz hat ser mala me.**

www.arsivakurd.org

# Azadiya bîrûbaweriyan alîkariya Erdogan dike



**David Romano**

Beriya du hefteyan Serokwezîrê Tirkiyê Recep Tayyip Erdogan serdana Îraqê kir û di serdana xwe de çû Herêma Kurdistanê jî. Li wir di merasîmeke taybetî de ku ala Tirkiyê jê re hat hildan, pêşwaziyeke germ li Erdogan hat kirin. Erdogan bi şêweyekî pozîtîv behsa wê herêmê kir (Lê bêguman wî xwe dûr xist ji bikaranîna peyva "Kurdistan"). Erdogan şandeke mezin a dîplomatkar û bazirganên Tirkiyê jî bi xwe re biribûn. Ev serdan nîşandana wê pêşketina ecêb e ya ku di navbera Enqere û Hewlêrê de heye, ji bo vê jî Erdogan û hikûmeta wî hêjayî destxweşiyê ne. Serokatiya AKP'ê enerjî û mejiyê xwe ji bo xurtkirina peywendiyên ligel Kurdên Îraqê bikaranîn û niha jî ew berhema wê serkeftinê dixwin.

Lê xuyaye ku "însyatîfa Kurd" a Erdogan û herwiha "însyatîfa Elewî", li paş dîwarekî mabin. Herçend ku ji ber reformên Erdogan gelek tişt ji bo Kurdan berbi pêşve çûne, lê pirsgirêka bingehîn ku helwesta dewleta Tirkiyê himberê mezintirîn kêmnetewa wî welatî ye, hîn jî maye. Tevî vê jî diyar e pêşveçûn zehmet e. Eger ku Erdogan bi rastî jî bixwaze pirsgirêka Kurd li Tirkiyê çareser bike, ew û partiya xwe bi tenê nikarin wî karî bikin. Di reformên pêwîst ên pêşerojê de, dibe ku bi şêweyekî sembolîk hebûna du neteweyên damezrêner li Tirkiyê bê nasandin, herwiha lêborîneke giştî ya rasteqin ji bo hemû endamên PKK'ê jî derbiçe, herwiha mafê kêmneteweyan ji bo axaftina bi zimanê dayikê û rêdayîn ji çekdarên berê jî ku bêne nav prosesa siyasî. Ev tişt dibe ku ji Erdogan û partiya wî re pir zehmet bin ku bikevin qunaxeke din. Bêtiriya nasyonalistên nava partiya wî û civaka Tirk wê reformê red dikin. Di heman demê karnekirina li ser wan meseleyan Kurdan ji wî aciz dike û ev jî ji aliyê dengan ve zirarê dide Erdogan û partiya wî li herêmên Kurdan.

Erdogan eger bixwaze rêyeke çareseriyê ji van pirsgirêkan re bibîne, pêwîst e ew xweşik temaşeyî wî karî bike, yê ku vê hefteyê li Îsrael qewimî; grûbeke Îsraelî ku li derveyî hikûmetê ne, ku di nava wan de wezîr û fermandarên berê yên leşkerî jî hene, bi armanca goşarxistina ser Serokwezîrê Îsraelê Netenyahû, ji bo ku vegere ser masa danûstandanan, rêyeke çareseriyê ragihandin. Ev jî ji ber ku Netenyahû bi armanca çareserkirina "pirsgirêka Filistîn û Sûriyê" ketibû ber dîwaran, lê di vê rewşê de wî bi xwe ew dîwar avakiribû. Paşî vê grûba bilind a Îsraeliyan planeke ji çend xalan pêkhatî ragihandin û tê de daxwaz kiribû ku ew hemû merc bên qebûl kirin ku di plana aştiyê ya sala 2002'yê a Komkara Erebî de hatibû ragihandin: ku yek ji wan xalan vegerandina hemû navçeyên dagîrkirî ku gir û bilindahiyên Golan jî di nav wan de bin, dana serxwebûniyeke hevbeş li Qudsê, derbiderên Filistînî yên ku rê jê re nehatibû dayîn vegerin Îsraelê, bila bedel jê re bê dayîn û destûrê jî bidinê ku li Îsraelê bijîn. Helbet li welatên ku demokrasiya wan hêşta sînordar e, ev cor pêşniyazên eşkere yên berevajî siyaseta domdirêj a hikûmetê, bi taybetî di rewşeke weke "perçekirina Qudsê" de, xelkê dixe zîndanan, lê di dewletên demokrat de ev corê goşarên "civaka sivîl" gotûbêjên pêwîst di nav xelkê de pêk tîne, ji bo ku hikûmeteke îflîc berbi pêşve bibe û alîkariya wan karan bike ku hemû kesên jîr di wê baweriyê de ne ku pêwîst e bên pêkanîn.

Di heman demê de li Tirkiyê her kesê derbarê "pirsgirêka Kurd" de tiştekî dibêje, pêwîst e haya wî ji xwe hebe û tirsa binçavkirin û dadgehkirinê bike li ser encamdayîna çendîn tawanan, ji wan jî "zirara yekgirtina niştîmanî" yan "alîkarîkirina rêxistineke teroristî" û "dijayetîkirina tirkîtiyê" yan jî "çêkirina kêmaniyan", (ez vê xala dawî hertim weke yek ji pêkenokên yasaya sizadayînê ya Tirkiyê binavdikim). Lê serbarî vê yekê li Tirkiyê ku hejmara rûniştvanên wê gelek e, gelek kesên zîrek û girîng hene ku ne endamên partiya Erdogan in. Ew dizanin welatê wan pêwîstî çi guhertinê ye derbarê pirsgirêka Kurd û dikarin alîkar bin di wê mijarê de, eger rê ji wan re bê dayîn ku bi şêweyekî azad axaftina xwe bikin. Ew dikarin di nav xelkê de diyalogê pêkbînin û Tirkên asayî hewl bidin ku wan pirsgirêkên nedadperwer ên ku di 90 salên borî de rastî Kurdan tên, fêm bikin. Ev kar wê rê bide ku raya giştî ya Tirkiyê zanyariyan derbarê hin siyasetan werbigirin ku her kesê jîr di wê baweriyê de ye ku pêwîst e bên pêkanîn. Bi wê nerînê wê alîkariya Erdogan jî bikin ku "pirsgrêka Kurd" çareser bike.

Giringtirîn pêngava ku pêwîst e em behsa wê bikin ew e ku em derbarê "pirsgirêka demokrasiyê" diaxivin li şûna ku em behsa "pirsgirêka Kurd" bikin. Bêguman demokratî bêyî azadiya bîrûbaweriyan serkeftî nabe, loma jî ewqas astengî û însyatîfên neserkeftî hene.

# Gelo hemû nûçeyên Îraqê nexweş in? Li Kerkûkê binêrin...



**Kameran Qeredaxî**

Kerkûk li Îraqê bajarekî tekane ye. Temenê wê zêdeyî 5 hezar salan dibe û bi vî awayî jî bi temen bi nêzîka 4 hezar salan ji Bexdayê mezintir e, di temenê Babel de ye, dibe ku kevintir be jî. Împeratoriyên Babel, Aşûr û Medya li ser şer kirine û yek ji navdartirîn lawên wê Danyal ê pêxemberê Cihû ye ku tê gotin wî 'binemala Îsrail' a talankirî û dûrxistî vegerande mîrnişîna Îsrailê. Li keleha kevinare ya Kerkûkê mizgevteke Misilmanan bi navê pêxember Daniyal heye ku di bingeh de perestgeheke Cihûyan bû, piştre bû dêreke Fillehan, berî ku di dawî de bibe mizgevteke Misilmanan.

Dibe ev veguherîn û bizav, ruhê lêborînê yê vî bajarî pêşan bide ku di serdema Osmaniyan de bû paytexta Şarezûr, bi piraniya xwe ya Kurd û Turkmen, Ermen û Aşûrî, heta Ereb jî tevî wan bûn û xelkê bajar jî ew weke beşekî resen hesibandin, berî ku hewldana Erebkirina Kerkûkê ji aliyê Saddam Huseyîn di salên 1970'an de dijî berjewendiya Kurd û Turkmenên bajêr bê kirin.

Kesê ku di heyama paşatiyê de li Kerkûkê jiyabe dizane ku Ereban tenê ji sedî 5'ê daniştvanên wê pêk dianîn (ev di çend dokumentan de hatiye çesipandin) û rêveberiya wê jî weke bingehekê Kurd û Turkmen bi dorê û bi hevbeşî birêve dibirin: Mûteserif (walî) Kurd û serokê belediyê Turkmen bû, an berovajî. Bi heman awayî derbarê postên din ên bilind, mînak rêveberên polîsan û dadwer, herwiha efserên herî mezin ên bajar jî ku wê çaxê baregeha hêzeke leşkerî ji sê hêzên ku artêşa Îraqê ji wan pêk dihat, bû. Hemûyan weke taximekî kar dikir, armanca wan a herî girîng xizmetkirina bajar û xelkê wê û ewlekariya wê bû, û tena lêvegera wan jî mûteserif bû. Dema mirov bi hûrbînî berê xwe dide wêneyekî kevin ku şah Feyselê dûyem tê de xuya dike, gava di destpêka salên 1950'an serdana Kerkûkê kir, wê bibîne ku kesayetiyên maqûl û serokeşîr ku li dora wî sekinî ne, bi piranî Kurd û Turkmen in.

Helbet nabe em mezinbûnê di xweşikkirina wêneyê kevin de bikin, lê bê guman tiştê min got ji rastiyê ne dûr e, lê ev wêne hêdî hêdî ligel rabûna 'şoreşan' di dawiya salên 1950'an de heta digihe îro, berbi têkçûnê çû. Lê dîmeneke nû li Kerkûkê heye ku behaneya hinek hêviyan be, ku dibe heta asteke baş wêneyê baş bike. Dîmen jî pêk dihat ji rêûresma sondxwarina walî û serokê civata parêzgehê berî du heftiyan. Ê yekem Necmedîn Kerîm Kurd e û yê duyem jî Hesen Toran Turkmen e, ku herduyan jî bi saya peymaneke navbera Kurd û Turkmenan de postên xwe wergirtin, di pêngavekê de ku heta demeke nêzîk jî li gor gelek kesan dijwar bû bê avêtin. Ew ser bi du gruban in ku navbera wan pir xirab bû, nemaze di qonaxa piştî hilweşandina Saddam di 2003'yê de.

Bi dirêjiya vê demê me guhdariya gelek kesan dikir ku mizgîniya çêbûna bextreşiyekê li Kerkûkê dikirin, û wiha wesif dikirin ku Kerkûk bombeyeke demkî ye û dibe ku di her xulekê de biteqe. NY, Amerîka, Brîtanya û rêxistin û grubên navdewletî ji bo çareserkirina nakokiyan, wisa gotin û gelek rapor li pey hev derxistin ku hemûyan hişyariya qewimîna karesatekê dida. Hinek grubên Îraqî jî tevlî wan bûn.

Lê dîsa gelek grûb û kesayetiyên ji xelkên resen ên Kerkûkê herdem tiştek didîtin ku kesên din nedidîtin û hişyarî didan ku 'xelkê Mekkê bêtir rê û şaxên xwe nas dikin'. Lê dibe ku ewên ji rewşa Kerkûkê berpirs in, mikur hatibin ku dem hatiye îdareya Kerkûkê careke din bikeve destê xelkê wê. Nemaze bikeve destê walî û serokê civatê, ku nûnertiya lêvegera bilind a îdareya karûbarên Kekûkê dikin û herdu jî lawên vî bajarî ne.

Tiştê me got nayê wateya kêmkirina rola Erebên Kerkûkê, ku pirsgirêka wan ji ya Kurd û Turkmenan cuda ye. Kurd û Turkmen di heman demê de rastî koçberkirina kotekî hatin û gundên wan hatin wêrankirin û mal û milkên wan ji wan hatin standin, di berjewendiya Ereban de, ku bo guherandina terazûya demografiya Kerkûkê lê hatin bicîkirin. Ji xwe ev bû sedemê wê yekê ku Erebên Kerkûkê li ser ên resen û hawirde bên dabeşkirin. Kurd bi taybetî daxwaz dikin Erebên ne resen vegerin cihûwarên xwe û di heman demê de vegerandina Kurdên derxistî bo cihûwarên xwe li Kerkûkê.

Lê ya ku pirsgirêkê kûrtir dike ew e ku nifşekî temam ji zarokên Erebên ne resen xwe resen dibîne, ji ber li Kerkûkê ji dayik bûne û li wir jî mezin bûne. Di aliyekî din de em dikarin bêjin ku Erebên Kerkûkê dûr ji xwestina xwe hem qurbanî û hem cellad in. Pirsgirêka Erebên Kerkûkê zêde aloz e, nemaze eger aliyê Ereb li ser astê hemû Îraqê pê re liberçav bê girtin.

Ron e ji ber çi walî û serokê civatê jî di gotina merasîmê de tekez kirin li ser girîngiya reftarkirina ligel pirsgirêka Ereban û hewldana beşdarîkirina Ereban di rêveberiya Kerkûkê de. Lê dayina herdu postên serekî bo Kurd û Turkmenan rewşeke nû li Kerkûkê tîne holê, ev jî wisa pêwîst dike ku pir bi hestiyarî reftar ligel pirsê de bê kirin. Ereb wê xwe li pêşber du egeran de bibînin: Qebûlkirina rewşa heyî û beşdarîkirin weke lîstikvanê sêyemîn, an mabûna li derveyî kevanê. Lê mabûna li derveyî kevanê xizmeta berjewendiya ti kesî ji van hersê lîstikvanan nake, êdî herdu yarîzanên Kurd û Turkmen divê hevrikiyê ser şiyana yekem bikin. Wekî din jî, divê yarîzanê Ereb jî hevrikiyê li ser aliyê Erebî yê Îraqî neke, ji ber mabûna pirsgirêkê li Kerkûkê û di nav xelkê wê de garantiya herî baş e ji bo gihiştina çareseriyekê. Tiştekî baş bû ku nûnerên Ereb di civata parêzgehê de yek helwest dijî peymana Kurd û Turkmenan pêşan nedan, hinekan ji wan red kir, hinekan qebûl kir û soza beşdarîkirinê jî dan.

Bi kurt û kurmancî, peymana Kurd û Turkmenan pêngaveke bingehînî bû li ser rêya rast. Lê bi şertê ku pêngavên din li pey bên, bi mebesta berfirehkirina beşdariyê û peydekirina atmosfêra xwestî bi armanca normalîzekirina rewşê, da ku xelkê Kerkûkê bikarin mafê xwe yê destûrî di destnîşankirina çarenivîsa xwe de bikar bînin. Eger kar bi rêya rast de here, wê ron bibe ku Kerkûk ne ew bombeya demkî be ku kes nikaribe fitîla wê jê veke. Hêvî jî ew e ku ev yek herî zûtir ji hemû aliyan re zelal bibe.

www.arsivakurd.org

# Bandora bêheşkeran li ser ciwanan


Dr. Abid Gulanî*

Ji ber bikaranîna maddeyên bêheşkeran (tilyak) her ku diçe rewşa civakê dikeve konaxek metirsiyê. Ew maddeyên ku zirarek pir mezin didin tendirustî û rewşa civakê herî pir jî ciwanan dikin qurbanên xwe. Herçiqas maddeya xeşxeşê ji bo hinek derman û melheman tê bikaranîn û ji bo hinek nexweşiyan dibe derman jî, lê dema ku ji bin kontrola bijîşkan derket ew maddeya bi zehir bandorek gelek xirab li ser tendirustiya mirovan dike. Nêzî 30 cureyên xeşxeşê hene û gelek nivîskaran dane zanîn ku berî zayînê 3000 hezar sal xeşxeş li Anadoliya û Mezopotamya hatiye çandin, herwiha hinek cureyên xeşxeşê li Hîndistan û Asya jî tê çandin. Niha jî herî pir welatê ku navê wan bi xeşxeşê tê rojevê, Tirkiye û Holanda ne. Hîn di serdema Etiyan de li Anadoliya xeşxeş hatiyê çandin û ev yek di lêkolînên arkeolojîk de hatiyê dîtin. Xeşxeş li îklîma germ şîn dibe û gelek cûrên wê hene. Hinek ji wan li Hindistan û Asya yê jî şîn dibin.

**Sedemê ciwan maddeyê bêheşkeran bikar tînin çi yê?**

**Dr. Abid Gulanî:** Her mirov di jiyana xwe de tiştek ji xwe re xistiyê adet, di nav civakê de ciwan herî pir meşrubê ji xwe re dikin adet. Bandora civakê di mezinbûna ciwanan de rolek gelek girîng dileyîze. Kesên ku xwe hînî wexwarina meşrub dikin ji aliyê derunî de tek diçin û ji aliyê fizîkî jî pir xirab tên xuyakirin. Ew mirov di dawiyê de ji ber bêçarebûnê xwe dikujin an jî kesekî din dikujin. Di encamê de zirarê dide civakê û dawî li jiyana xwe jî tîne. Gelek kes dibêjin bandora meşrubê kêm e lê ew ne di wê ferqê de ne ku bi demê re bandorek mayînde li ser jiyana mirov tê kirin.

**Di kîjan temenî de ciwan xeşxeşê bikartînin?**

Ciwan di temenê navbera 15, 16 û 30 salî dest bi kişandina xeşxeşê dikin. Ev madde jî mirovan dixe rewşek wisa ku wan bê îrade dihêle û heta radeyek şîzofrenî dike. Bi taybetî ev bûyer li Ewrûpa bi ciwanên ku xwedî pirsgirêkê mezin in, an jî ciwanên ku wek penaber tên vir û bi pirsgirêkên gelek dijwar re rû bi rû dimînin re tê xuyakirin. Ew ji bo çareseriya pirsgirêkên xwe vê rêbazê maqûl dibînin; ev jî ji bo jiyana wan a civakî encamên herî xirab tîne. Ew mirovên ku xeşxeşê bikartînin bê taqet dikevin û zirarên hîn mzintir didin jiyana xwe; dest bi qumarê dikin, malê diterikînin, heval û malbatên xwe winda dikin û dikevin nav jiyaneke bê armanc. Jiber ku ew tilyak zehîra xwe berdide bedena wan mirovan û wan bêtevger dihêle.

**Amadekirin: Zelal Çelîk**

**Dr. Abid Gulanî ji Rojhilatê Kurdistane ye û li Norwecê dijî, Sosyolog û Pedegog e .*


# REKLAMA WE
## dikare li vir be!

**Rojnameya Rûdawê bi erzanî reklam û peyamên we dighîne bi hezaran sermayedar û xwendevanên Kurd**

**Serî li me bidin:**
**Buro: +49 (0) 221-26 00 4002**
**Mobil: 0152-54 86 5621**
**e-mail: rudawname@googlemail.com**


## Hefta pêş me çalakiyên Kurdan

### Komcivîna KURD-KAV'ê li Stenbolê

Weqfa Çandî û Lêkolînî ya Kurdî (KURD-KAV) 10'emîn komcivîna xwe lidardixe.



**Dem:** 16'ê Nîsanê 2011
**Demjimêr:** 10.00
**Cîh:** Tarlabaşi Bulvari Çorbaci Sk. No: 13 Taksim / Stenbol

**GSM:** 0090.530.821 00 62
**TEL:** 0090.212.237 10 61
**E-MAİL:** kurdkav@gmail.com

### Kurdên Êzidî li Bremenê cejna Çarşema Sor pîroz dikin

Li Almanyayê li bajarê Bremenê Kurdên Êzidî wê tevî dostên xwe Çarşema Sor bi girseyî pîroz bikin.




**Cih:** Otto-Brener Allee 44-46
28325, Bremen-Tenever

**Bername:** Vekirin bi Qewl, Hozan Zerdeştê Kal, Silêman Rengîn, Hozan Tuncel, Kilamedîn Neco û Folklor

**Dem:** 16.04.2011
**Demjimêr:** 14:00
**Bo têkiliyê:** 0173 6227126

### Cejna Çarşema Sor li Sulingenê

Li Almanyayê li bajarê Sulingenê Kurdên Êzidî tevî dostên xwe Çarşema Sor bi girseyî pîroz dikin.




**Cih:** Nienburgerstr 23
27232, Sulingen

**Bername:** Vekirin bi Qewl, Hunermend Helbest, Koma Jiyan, Hozan Deniz, Hozan Faysal, Koma Melek

**Dem:** 17.04.2011
**Demjimêr:** 14:00
**Bo têkiliyê:** 0172 5720839

## Xaçepirs

**Çeperast:** 1- Siyasetmedarekî Kurdên Sûrîyê. 2- Li Îranê bajarek – Mirov tê re dimeşe, ciyê çû n û hatinê – Navekî jinan, ciyê zehmet – Destnîşankirina tiştekî. 3- Sebze û hêşînhatek – Şiv, darê zirav û qewîn (berepaş) – Dest vekirin, ji feqîrî tiştek xwestin (berepaş). 4- Nîşan, firêze – Dilxweşkirina xwedîyê mirîyan, serdana mazûrvanê tazîyê – Notayek. 5- Şirûd, merc (berepaş). 6- Meha Newrozê – Vexwarinek bi kofeîn (berepaş). 7- Dirêjkirin, vezilandin – Ne germ, cemidî. 8- Bê av, avê dixwaze (berepaş) – Virek, derewkir. 9- Bextewarî, jiyana xweş – Dilxweş, dilgeş. 10- Teyr û tilûrek – Wextê mirinê, qeder.

**Serejêr:** 1- Sextekarî, hîlebazî. 2- Edab, ,kurmîbûn, derd – Ma-moste, mahîr (berepaş). 3- Bajarekî Kurdistanê – Ap, mam. 4- Avadanî, lêkirin – Ciyê balafir û keştîyan kifş dike. 5- Safî, paqij – Bidest nexist, lê geriya lê destvala hat. 6- Belê, raste (berepaş) – Notayek – Notayek. 7- Bersiva bangkirinê – Teradîn, gêjo, zugurd. 8- Dirindeyî, jenosîd, barbarî (berepaş). 9- Çêlîk û têjîkên kûçikan – Pirsgirêk, problem. 10- Peyv, axavtin, gotin (berepaş) – Sol û pêlava ker û hespan. 11 – Navekî zilaman. 12- Di muzîkê de nîşana rawestînê. 13- Geya û pincarê lihevpêçayî, lihevgerandî. 15- Navbera roj û şevê. 16- Lehî, ava xurt.



**Bersivên hejmara 89**



www.arsivakurd.org

Tu jî dixwazî wêneyê xwe li vir bibînî?
Ji me re bişîn: info@rudaw.eu

## Welatê me

# Qamişlo



Bajarê herî mezin û navenda Rojavayê Kurdistanê ye. Hejmara rûniştvanên wê dighije nêzîka 400.000 mirovan. Bi çandiniya genim û dexil, dewlemend e. Herwiha li navça Dêrikê, ku navçeyeke Qamişlo ye, gelek petrol jî heye û niha pişka herî zêde ji petrola Sûriyê ji vir tê hilberîn. Bi xwe Qamişlo û bajarê Nisêbînê (li Bakurê Kurdistanê) yek bajar in, tenê têla sînor a di navbera Bakur û Rojavayê Kurdistanê de herdu bajar ji hev cuda kirine. Ji ber ku Qamişlo dikeve sêgoşa Bakûr, Başûr û Rojavayê Kurdistanê, lewma xelkê Qamişlo rolek mezin di xebata 'Azadiya Netewa Kurd' de lîstiye.

# Pêşbirka Kîso û Kîvroşkê

Hebû tune bû kîvroşkek gelek ji xwe razî li daristanekî hebû. Kîvroşk dinaziya û digot li vê daristanê kesekî ji min bileztir bireve hebe, bila derkeve hemberî min. Kîsoyek hat ber pozê wê û got: "Ewqasî bi xwe bawer nebe, were em bikevin pêşbirkê."
Kîvroşk ecêb ma, bi dengekî bilind, tîq, tîq, keniya û got, "Kuro Kîso tu bi kîvroşkê re dikevî pêşbirkê? Ma kê ev bihîstiye?! De welle ez dilê te naşkînim, kerem bike, vaye meydan."
Cihê pêşbirkê diyar bû û pêşbirkê destpêkir. Kîvroşkê Kîso nexist bala xwe û çû li bin darekê ji xwe re raza, lê kîso pêşbirka xwe domand. Dema Kîvroşk ji xew şiyar bû, dît ku vaye kîso vedigere jî û ji Kîvroşk re dibêje: "Min ji te re got, ti carî xwe ji xelkê bilindtir nebîne. Tu razayî, te winda kir, min jî kar kir û ez bi ser ketim."



## Şikestina Hestî

Hestî di laşê mirov de beşa herî hişk e. Lê carcaran hestî jî dişikên, bo mînak di dema lîstina fûtbolê de. Ji bo ku pizîşk bikaribin hestiyên şikestî dîsa rast bikin (cebirandin), cihê şikestî didin berhev û heta demek dirêj di nava alçiyê (gêç) de dihêlin. Dermanê hestiyê şikestî tenê ev e, ji derveyî vê pizîşk nikarin ti tiştî bikin, ji ber ku hestî xwe bi xwe derman dike. Piştî ku hestî dikevin nava alçiyê, xwîn li dera şikestî kom dibe û li wir qatek nû çêdike. Ji bo ku mirov piştrast bibe ku hestî bi temamî hevdu girtine, 6 meh heta salekê dem pêwîst e.









| | | | | | |
|---|---|---|---|---|---|
| G | e | N | i | M | Ard jê tê çêkirin |
| B | e | H | î | V | Di nava qalik de ye, hem hêşîn hem hişk tê xwarin |
| B | a | R | a | N | Erdê av dide |
| H | i | N | a | R | Fêkiyek, nava wî tijî hebikên sor in |
| B | a | K | k | R | Aliyekî erdnîgariyê |
| G | e | W | i | R | Rengek ji nava rengan |
| M | e | W | î | J | Tiriyê hişkkirî |
| L | î | M | o | N | Fêkiyê herî tirş e |

FÊRÎ KURDÎ BIBE

Îî ی

Îsot کەشتی



Amedekirina rûpela zarokan:
Sevda Şafîk

www.arsivakurd.org